# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 117 05 - 11 Îlon 2016 basnuce.com




Tehsîn Taha

## Stranbêjê niştimanî

R13

Piştî mudaxelaya Tirkiyê hevsengiya Rojava tevlîhev bû

# Di peywendiyên PYD-DYA'yê de serdemek nû?

www.arsivakurd.org

Bi operasyona Tirkiyê ya Cerablûsê re li Sûriyê û Rojava kart ji nû ve tên vekirin. Guherîna polîtîkaya Tirkiyê ya Rûsya û Sûriyê, tesîr li siyaseta PYD'yê ya navdewletî herwiha peywendiyên wê ligel hevpeymanên wê jî kir. Bi lihevkirina Rûsya û DYA'yê ya bi Tirkiyê re û piştî tevgera leşkerî ya Tirkiyê ya li ser Cerablûsê li Rojava hevsengî têk çû.

DYA'yê piştî mudaxeleya Tirkiyê, ji YPG'ê xwest ku hêzên xwe vekişe rojhilatê Firadê. Ev yek jî travmaya "xiyanetê" ya dîrokî ku di navbera kurdan û DYA'yê de heye, dîsa anî rojevê. Herwiha nîgeraniya "Gelo wê DYA kurdan bifiroşe" peyda bû. Rayagiştî ya kurd, li bersiva pirsa "Gelo wê DYA Tirkiye ya ku heta niha ji DAIŞ'ê re bêdeng mabû, têxe şûna YPG'ê ya ku di şerê li dijî DAIŞ'ê de hemaheng bû" digere.

Pispor, amaje dikin ku ew ê DYA'yê bi demê re herdû aliyan bîne ser maseya diyalogê. Hinek pispor jî balê dikşînin ser wê yekê ku peywendiyên DYA'yê ligel PYD'ê leşkerî ne û dema ku pêdawîstiya wê bi YPG'ê nemîne dê peywendiyên xwe bi dawî bike. Xweşbîn jî balê dikşînin ser wê yekê ku DYA dê hevpeymanekî weke YPG'ê yê samîmî peyda neke û heta DAIŞ hebe ew ê peywendiyan wan berdewam bike. Herwiha tekeziyê li ser wê yekê jî dikin ku peywendiya çareseriya pirsa Rojava bi pirsa Bakur jî re heye û heta ku li Bakur çareserî bê dîtin dê pirsa Rojava jî çareser bibe.

R02-3-4



Servet Tosun

## Li Amerîka firotina kurdan ewqas hêsan nîne

Rêveberê Navenda Lêkolînê ya Polîtîkayên Kurdî li Washingtonê Servet Tosun, dibêje, li Amerîkayê kurd ne tenê bo hikûmetê, lê bo raya giştî jî biqîmet in, û firotina wan ji aliyê hikûmetê ewçend ne hêsan e. Li gor Tosun, niha li Amerîkayê jî gelek hevalên kurdan çêbûne û di medyaya Amerîkayê û rêxistinên wir de hertim qala kurdan dikin.

R08-9

Mesrûr Barzanî:

## Em ji Mûsilê agahdar in

Operasyona Mûsilê di rojeva Şêwirmendê Encûmena Asayîşa RHK'ê Mesrûr Barzanî jî de ye. Asayîşa Kurdistanê bi rewşa Mûsilê re ji nêz ve eleqedar e û hêzên ser bi Asayîşê car caran li herema bin destê DAÎŞ'ê operasyonên taybet lidardixin.

R10



BasNûçe 05 - 11 Îlon 2016



# Trawma ya kurdan a “xiyanetê” heta kengê?

Girtina Cerablûsê ji aliyê Artêşa Tirkiyê (TSK) ve li gel Artêşa Azad û bombebarana çeperên Hêzên Sûriye ya Demokratîk (HSD), ku serekiya wê YPG dike rewşa herêmê tevlûhevtir kir.

Operasyona ku DYA'yê diyar kiribû ku ew ê piştgiriya esmanî bidê, piştî demekî kirt bi girtina Cerablûsê bi encam bû. Tirkiyê piştî bidestxistina Cerablûsê ragihand: “Armanca me ne tenê DAIŞ e, em ê di heman demê de PYD'ê jî ji sînorên xwe dûr bixin.” Piştî ku bertekek ciddî ji hêla DYA'yê ve bo vê daxuyaniyê nehat nîşandan, peywendiya DYA-YPG'ê bû cihê niqaşan.

DYA nêzî 2 salan e li Rojava û Sûriyê bi YPG û HSD'ê re di nava kordînasyonê de li dijî DAIŞ'ê şer birêve dibe. Piştî ku Tirkiye jî beşdarî listîkê bû daxuyaniyên DYA'yê yên bi dengekî nizm bo rawestandina operasyonê û zextên Tirkiyê yên li ser YPG'ê, herwiha hişyarkirina YPG'ê ku xwe ji rojavayê Firadê bikşîne, piştî gotinên Tirkiyê yên bo qûtkirina girêdana Efrîn û Kobanê bû cihê matmayînê. Di raya giştî ya kurdan niha li bersiva pirsa, “DYA wê YPG'ê ku heta niha peywendiyên baş birêvebiribûn, wê bi Tirkiye ya ku li hemberî DAIŞ'ê bêdeng mabû ve bigûhere?” digere. Li ser vê mijarê pispor weke hev nafikirin û hinek dibêjin DYA dê bi demê re aliyan bîne ceh hev, hinek jî diyar dikin ku peywendiya DYA'yê ya bi YPG'ê re tenê leşkerî bû û ji ber wê yekê dema ku pêdiviya wê pê nema, wê ev peywendî jî qût bibe. Yên xweşbîn jî eşkere dikin ku DYA hevkarekî ji dil yê wek YPG'ê nabîne û heta ku kêşeya DAIŞ'ê berdewam bike, peywendiya wan jî dê bidome.

Lêbelê piştî ku armanca YPG'ê ya bi hevre girêdana herêmên kurdî ku hemû kurd jî piştgiriyê didinê û daxwaza kontrolkirina hemû xaka Rojava bi operasyona Tirkiyê re derbe xwar û DYA'yê jî bi bêdengmayînê vê yekê niha pesend kir, bû sedema nîgerana “DYA wê dîsa kurdan bifroşe?” ku trawmayeke dîrokî ye di peywendiyên kurdan û DYA'yê de.

Berdevkê Pentagonê Peter Cook, li ser pirsa “Êrişên li dijî YPG'ê li DYA'yê bû cihê nîgeranan?” wiha bersiv da: “Nirxandina armancên operasyonê ez ji tirkan re dihêlim. Li gorî me divê armanc DAIŞ be, aasî ku em dibînin ev jî tê kirin.”

Berdevkê YPG'ê Rêdûr Xelîl jî midaxeleya leşkerî ya Tirkiyê ya bo Sûriyê weke, “helwesteke êrişkar a li dijî karên navxweyî yên Sûriyê” nirxand û ragihand ku ev geşedan encama hevdîtin û rêkeftina di navbera hikûmetên Îran, Sûriye û Tirkiyê de ye. Xelîl li ser hişyariya Wezîrê Karên Navxweyî Mevlüt Çavuşoğlu ya “Divê YPG vekişe rojhilatê Firadê” jî diyar kir ku tenê HSD dikare vê biryarê bide. Piştî vê daxuyaniya YPG'ê Cîgirê Serokê DYA'yê Joe Biden got: “Di derbarê Menbîcê de biryarên me hene. Divê YPG û hêzên Sûriyê derbasî aliyê din ê Firadê nebin. Eger derbas bibin ji ber ku pabendî vê yekê nebûne DYA bi tu awayî piştgiriyê nade wan.”

Di duyem roja Operasyona Cerablûsê de Artêşa Tirkiyê bi obusan êrişî hêzên YPG'ê kir. Li hemberî vê yekê YPG'ê li nêzî gundê El Amarne bi mûşekan 2 tankên Tirkiyê rûxandin û di encamê de leşkerekî canê xwe ji dest da. Serokkomar Erdoğan jî di mîtînga Dîlokê de ragihand ku heta ku ew qira PYD'ê bînin ew ê têkoşîna xwe bidomînin.

Berdevkê Ofîsa Çapemeniyê yê Rojava Îbrahîm Îbrahîm jî destnîşan kir ku YPG li rojhilatê Firadê maye, lêbelê hêzên HSD'ê yên li Menbîc û devera Cerablûsê hatine teqwîyekirin. Wezîrê Berevaniyê yê DYA'ê Ashton Carter jî eşkere kir, “Rêkeftina me ya li gel HSD û YPG'ê ew bû ku piştî Operasyona Menbîcê YPG hêzên vekişîne rojhilatê Firadê û wan ev pêk anî. Ji ber wê yekê ev ê bi awayekî xwezayî ji hêzên Tirkiyê yên li Cerablûsê dûr bimînin û hêzên Tirkiyê jî li deverên xwe de dê bimînin.” Carter herwiha diyar kir: “Me Tirkiye ji bo ku hêza xwe bide şerê li dijî DAIŞ'ê û êrişî HSD'ê neke hişyar kir.”

Operasyona Cerablûsê ya Tirkiyê û helwesta DYA'yê ya li hemberî vê yekê, gotinên, “DYA'yê YPG firot, rêkeftina di navbera DYA û YPG'ê de bi dawî bû” bi xwe re anîn. Akademîsyen, rojnameger û aliyên siyasî îhtîmala guhertina peywendiyên DYA û YPG'ê piştî Operasyona Cerablûsê re, encam û wateya van pêşveçûnên dawîn ji BasNûçe'yê re nirxandin.

## 'Wê peyvendiya DYA û PYD'ê berdewam be'

**Dr. Jabar Kadir: DYA dikare bibe navbenykarê PYD û Tirkiyê**

Amerîka di heman demê de bi çend layenan re dikare hevsengiyên xwe birêve bibe. Tirkiye weke hevpeymanê xwe di NATO'yê de dibînin. Amerîka jî radigîhîne ku kurdên Sûriyê ku li hemberî DAIŞ'ê berxwedaneke baş kirin û xwe di vî şerî de îsbat kirine, ew jî weke hevpaymanê wan e û ew naxwazin di navbera hevpeymanên wan de alozî çêbibin. Dewletên mezin di heman demê de bi sed hêzên nakok bi hev re têkiliyan datînin, ji van kîjan xizmeta stratejiya wan dikin ew li wê dinêrin. Li Îraqê jî ku rewşeke aloz heye, ereb şîe, sunne û kurd ku hemû li hemberî hevdu ne, têkiliyên wan nêzikî 20 salen e berdewam e û dixwazin bi herkesî re di nav danûstendinan de bin. Ji aliyekî ve piştgiriya hikûmeta navendî dikin, ji aliyekê din ve piştgiriya hêzên din dikin ku DAIŞ'ê ji holê rakin. Pêwendiyên DYA'yê bi Herêma Kurdistanê re jî stratejîk e.

Dikarin ne yekser, lê bi navbendiyan Amerîka dikare van hêzan bîne ba hev û rêkeftinana di navbera wan de çêbike ku şer bi hev re nekin. Demekî ku Tirkiye û YPG dikarin bi hve re danûstendinên rasterast de bikin ku eger alozî di navbera Tirkiye û PKK'ê de kêmtir bibin û proseyekî aştiyê destpê bike. Ji ber wê yekê eger pêwendiyên di navbera PKK'ê û Tirkiyê baş bibin wê têkiliyên Tirkiyê bi PYD/YPG'ê re jî hêsantir dibin. Di vê rewşê de bi navberiyê dikarin têkilî bi YPG/PYD'ê re çêbikin.

**Dr. Deniz Çifçi: DYA peyvendiyên xwe bi PYD'ê re qut nake**

Dema em li siyaseta DYA'yê ya Rojhilat Navîn binêrin, bi zelalî xuya dike ku DYA bi hin hêzan re bi awayekî stratejîk û bi hin hêzan re jî pêwendiyên taktîkî, rojane ava dike. Têkiliyên di navbera Amerîka û PYD'ê bidin ber çavan, belê ev pêwendî heta astekî stratejîk e. Ji ber ku Amerîka di siyaseta xwe ya Sûriye û Îraqê de kurdan tenê taktîkî nabîne, stratejîk jî dibîne. Başûrê Kurdistanê ji bo DYA'yê hevpeymanekî stratejîk e ev teqez e. Amerîkayê piştî sala 2013'an, piştî Kobanê bi kurdan re bi YPG'ê re têkiliyên stratejîk pêşxistin. Ez bawer nakim DYA pêwendiyên xwe û PYD'ê qut bike. Lê Amerîkayê heta cihekî destûr daye Tirkiyê ku bikeve Rojava. Peymanên veşartî yên di navbera Amerîka û Tirkiyê de ew e ku Tirkiye heta astekî operasyonan pêk bîne, heta demekî li wê derê bisekine û Cerablûsê biterikîne.

Amerîka ne dixwaze dilê Tirkiyê û ne jî dilê PYD'ê bişkêne û dê riyekê bibîne ku kantonan bigihîne hevdû û federalîzm dê çêbibe. Lê ji bo ku ev federasyon ji bo Tirkiyê nebe metirsî destûr da ku Tirkiye hêzên xwe di Cerablûsê de bicih bike. Em dikarin bêjin ku ne bi dilê wan be jî Amerîka û PYD'ê li hev kirine, heta Îran jî di vê rewşê de naxwaze hêzên xwe pêş bixe. Îran radigihîne ku divê Tirkiye operasyonên xwe rawestîne û bi Esad re li hev bike. Rûsya jî, welatên Ewropayê jî, Pen-tagonê jî van hemûyan diyar kirin ku divê Tirkiye operasyonên xwe rawestîne û heta radeyekî destûr jê re hatiye dayîn. Rûsya û Amerîka jî destûrê nadin ku Tirkiye zêdetir pêş bikeve.

**Dr. Ekrem Önen: Wê peyvendiya DYA û PYD'ê berdewam be**

Bi ya min hevkarîya DYA û YPG/PYD wê berdewam be. Beyanên berpirsê DYA'yê derbarê Operasyona Cerablûsê ya Tirkiyê û derbarê YPG/PYD de bêhtir konjukturel e û nabe mirov li ser esasê beyanê konjukturel siyasetê bike. Pir eşkere ye ku siyaseteke stratejîk a zilhêzên navdewletî wek DYA û Rûsya li herêmê heye dikare di stratejiya herduyan de cudatî hebe, lê tiştekî grîng û sereke di siyaseta herduyan de muşterek heye ew jî rêlibergirtina îslama radîkal û siyasî ye. Ji bo rêlibergirtina îslama radîkal û iyasî îro li herêma Rojhilata Nêzîk ji bilî kurdan tu alternatîvê DYA, Rûsya û Yekîtîya Ewropayê nîne. Divê kurd xwe ji guhertinên mezin ku ji bo wan pozîtîv in re hazir bikin. Ji xwe ez herdem dibêjim pirsa kurd ji destê kurdan û welatên kurd parçe kirine derketiye ketiya destê zilhêzên navdewletî bi teybet DYA û Rûsya û ev herdu jî di pirsa kurd de pozîtîv in. A grîng niha ev e ku kurd neyên provakasyonê welatên Kurdistan perçe kirine û dijberiya DYA û Rûsyayê nekin. Jê pêvê DYA û Rûsya dê proja xwe ya ku niha bi dizî li hev kirine wê pêk bînin ew jî bi ya min di xêra kurdan de ye û welatên Kurdistan perçe kirine jî nakarin xwe li ber vê projê bigrin. Pir eşkere ye heger ne bi rezamendiya DYA û Rûsyayê biba Tirkiyê nedikarî bikeve Sûriyê.



**Lêkolîner David İgnatius: DYA rêzê li kurdan digire**

Şerê di navbera Tirkiye û kurdên Sûriye ku wek YPG'ê tên nasîn de şerekî nexweş e. Vê yekê kampanyaya DYA'yê ku dixwest paytexta DAIŞ'ê Raqqayê rizgar bike dereng xist. Tiştê ku xemgîn ew e tevî ku armanca hêzên herêmî têkoşîna li dijî DAIŞ'ê ye, lê ji hev bawer nakin, ew jî klasîkeke Rojhilata Navîn e.

Ji bo ku em girêka Sûriyê çareser bikin em bi kurdên Sûriyeyê destpê bikin. Biryargehên DYA'yê bi piranî digotin ku hêzên kurdan di nav hêzên bi DAIŞ'ê re şer dike de ya herî bi hêz e. Piştî şerê giran ku di sala 2014'e û di 2015'an de cîhadîst ji Kobanê derxistin. Piştî meha sibatê bajarê Şedadê ku li Rojhilatê Reqayê dimîne û wê mehê jî li ba-kurê Reqayê bi rizgarkirina Menbicê dorpêç temam kirin. Di meha gulanê de min li bakurê Sûriyeyê li baregeheke DYA'yê ku hêzên kurdan li wir dihatin perwerdekirin dîtin. Min li wê derê fêm kir ku çima hêzên taybet yê DYA'yê ji wan re rêzeke mezin digrin û wan ji bo operasyona rizgarkirina Reqayê hêza esasî dibînin. Min ji devê wan çîrokên wan ê qehremaniyê guhdar kir û min fêm kir.

Rêveberiya YPG'ê, eger ku Tirkiye xwe paşve bikşîne rola xwe ya Operasyona Reqeyê wê ji xwe re bipirsin û ji Pentagonê re bêjin ew ne surprîz e. Mixabin di demeke nêz de hêzeke alternatîv ku bajar rizgar bike tuneye. Di encama wê rewşê de qedandina DAIŞ'ê wê dereng bibe. Kurdên Sûriyê belkî ji sînorên Rojava ku axa ji bav û kalên wan ji wan re maye derbas bûne lê ew tekez bi teşvîqa DYA'yê hat kirin.

**Dr. Zara Salih: Peywendiyên PYD û DYA'yê leşkerî ne**

Helbet pêwendiyên Amerîkayê yên bi HSD/YPG'ê re jî diyar kir ku ev pêwendiyên leşkerî ne. Ew di warê leşkerî de alîkariya van hêzên kurdî dikin. Pêdiviya Amerîkayê bi hêzeke xurt li ser erdê heye, ji Amerîkayê re ne girîng e ev çi hêz be. Îro YPG û Pêşmergeyên Başûr ev hêz in ku li dijî DAIŞ'ê şerekî xurt dimeşînin û ev jî di berjewendiya Amerîkayê de ye. Baweriya Amerîkayê bi ereban û Artêşa Azad nayê, lewma pêwendiya Amerîkayê bi kurdan re heye. Piştî şerê Cerablûsê DYA'yê ragihand ku ew qebûl nakin Artêşa Tirkiyê li kurdan bixe. Ev tişt ne ji bo xatirê kurdan e, ev di berjewendiya Amerîkayê de ye û pêdiviya wê bi kurdan heye. Dema kurd roleke girîng lîstin wê para wan di vê guhertinê de hebe.

Îro siyaseteke îdeolojîk ku tenê xwe qebûl dike, ev jî ne baş e, divê hêzên kurdî yên li Rojavayê Kurdistanê li hev bikin û siyaseteke xurt bimeşînin. Wê demê kurd dê bikarin bi kêmanî bibin xwedî federali-yekê. Pêwendiya Amerîkayê leşkerî ye û hîn nebûye siyasî. Li gor agahiyên min Amerîkayê ji Opozîsyona Sûriyê xwestiye ku divê hûn pêwendiyên xwe bi YPG'ê re ava bikin. Ev jî bi awayekî leşkerî. Ne dûr e YPG'ê weke nûner û hêzek beşdariya opozîsyonê bike û tevlî civîna Cenevrê bibe.

**Dr. Kemal Sîdo: Tirkiye li beramberî YPG'ê ye**

Li beranberî YPG'ê Tirkiye heye. Siyasetekî DYA û NATO'yê li vê he-rêmê heye. Herwiha sîyaseta Tirkiyê jî gelek tund e. Dibejê, 'yan ez an yekî din.' Tirkiyê di tarîxî de hemû caran ji hevkarên kurdan re gotiye 'yan em, yan ew', çareserîyekî hevpar qebûl nake. Ji ber wê mirov ni-zane wê çawa bidome. Dil dixwaze DYA li Sûriyê aliyan lihev bîne. Ev yeke ji bo Tirkiyê û kurdên li Tirkiyê jî baş e. Ev yeke xuya ye ku de-ma pêwendiyên Tirkiyê bi Herêma Kurdistanê, Sûriyê an Iraqê re baş dibin, ev siyasete bandorê li ser kurdên Tirkiyê û polîtîkaya Tirkiyê ya kurdan jî dike. Lê Tirkiye bi aqil nafikire. Çumkî eger lihevkirin çêbibe li Tirkiyê jî gengeşî û malwêranî çênabe.

**Dr. Michel Chossudovsky: Hewldana derbeyê ji bo dagirê bû bingeh**

Dagirkirina Sûriyê û şêwirmendiya DYA û NATO'yê, kordinasyona lojîstîk a leşkerî, sîstemên ragihandinê û operasyonên bejayî û hewayî divê hemaheng bin. Tevahiya wan nîşan dide ku di navbera DYA û Tirkiyeyê de têkiliyên dostane û lihevhatî hene. Eger alikariya Pen-tagonê ku di şerê Sûriyeyê de rayedarê herî mezin e nebe nikarin operasyonan çêbikin. Washingtonê jî û Erdoğan jî zanîbûn wê hewl-dana derbeyê têk biçe. Li berevajiyê wê Erdoğan wê pêvajoyê li ser navê demokrasiyê gelê tirk girt pişt xwe û desthilatdariya xwe saxlem kir û îmkanê ji pêngava Sûriyeyê re derxist hole. Paqijiya di nav artêşe de, bi kêra tasfiyekirina efserên ku ji bo pêngava Sûriyê re îtîraz dikirin re çêbû. Ji bilî wê gelek saziyên medyayê kirin hedef û ew girtin. Pêşeroja endamtiya Tirkiye ya NATO'yê wê çi bibe li dereke, Pentagon, NATO, Serkariya Mezin a Tirkiyeyê û Îsraîl di nav têkili-yeke mayînde de ne. Li gel wî Rojava, bi dagirkeriya Tirkiye ya Sûri-yê pir dixwazin bi Rûsyayê re rûbirû bimîne. Wiha wê Tirkiye dema tengav bibe wê nikaribe bêje alternatîvên me hene. Biden ji kurdan xwest ku bi Tirkiyê re rûbirû nemînin. Projeya DYA'yê ya “ Rojhilata Navîn ya Nû” wek ku li Sûriye û Iraqê, li Tirkiyeyê jî avakirina Kurdi-stanekê di nav xwe de digre û dema pêwist be navbera xwe û Tirkiyeyê xirakirinê de wê texsîr neke. Rêya ku DYA'yê diyar kiriye ew e: “Rêya ku diçe Tahranê ji Şamê derbas dibe.” Divê projeyên şer yên DYA'yê di wê aliyê de bê dest girtin.

## Tirkiye - YPG/PYD û Amerîka

NECÎP BALAY



Ez ne di wê baweriyê de me ku Amerîka dest ji PYD/YPG wiha zû berdide, wek tê zanîn şerê li dij DAIŞ'ê wiha bi salek û duyan bidawî nabe. Ji bo Amerîka û cîhana Rojava jî xweya bû ku, yên herî li pêş şerê DAIŞ'ê bi şêweke serkeftî kir, be tenê kurd in, çi li Sûriyê yan jî Îraqê. .. Gelek xal hene ku nayên dîtin, gelek şirovekarên hene hema bilez û serve serve li meselan dinêrin, Amerîka dest ji kurdan li Sûriyê PYD/YPG bernade jiber van sedeman.

Amerîka bi şêweyeke fermî daye xuyakirin ku kurd PYD/YPG hevpeymanê me ye di şerê li dij DAIŞ'ê de di têrim û îd-yomên siyasî de gotina 'hevpeymanî' wiha bi asanî ji aliyên kesên fermî yên welatekî weke Amerîka nayê bilêvkirin, 'hevpeymanî' tiştek startejîk e ne ku taktîk.

Amerîka hevpeymaniya xwe li gel Tirkiyê û kurdan PYD/YPG li Sûriyê naxe heman xane û heman seviyê, ew bi mezî-na xwe ya taybet û li gor hêza her aliyekî hevpeymaniyê dike, Amerîka ne Tirkiyê ji dest dide ne jî kurdan, ewê hewil bide hevsengiyekê di warê têkiliyên xwe yên bi kurdan û Tirkiyê re pêk bîn e.

Tirkiye ya bi serokatiya Erdoğan li cîhana Rojava-Amerîka û Ewropa wiha baş nayê hezkirin, ev jî şansekî baş yê kurdan e, Rojava gelek bi hesasî nêzî siyaseta Erdoğan û armancên wî yên demdirêj dinêre.

Ji derveyî şerê DAIŞ'ê li herêmê bi giştî û li Sûriyê bi taybetî hewcedariya Amerîka û Rojava bi kurdan heye, ji ber ku, hem Rûsya û hem Îran di Sûriyê de ne, ji derveyî wê jî kurd li Sûriyê ji bo cîhana Rojava gelek giring in, bi taybet di dema desthilata Beşar Esad de. Divê neyê jibîrkirin ku Esad demek dirêj şer û dijatiya Îsrailê kiriye, ne mimkûn e, Îsrail, Ewropa û Amerîka bihêlin, Îran wiha bi rihetî li Sûriyê bihêz bibe.

Amerîka dizane ku alternatîf ji bo Esad li Sûriyê dê komên îslamî yên radîkal û tevgera Îxwanî Muslimîn be, ew dê gelek ji rejima Esad baştir nebin, lê YPG û herwiha Hêzên Sûriya De-mokratîk (HSD) weke hêza herî jêhatî û layîq li Sûriyê tên dîtin.

Li herêmê hêzên kurdan bi tenê PYD û YPG weke civakek sekolar tê naskirin, jinê rolê xwe heye, wekheviya jin û mêran heye, herwiha di Îdareyên Rêvebiriya Xweser de komên din yên etnîkî weke; ereb, tirkmen, şîa uhw rolê wan heye û PYD'ê ew di nava xwe de hembêz kirine.

Herwiha ji aliyê komên olî û mezhebî de ji, PYD/YPG bawe-riyê bi pirsên ev sûnî ye, ev şîe yan elewî ye, nîne, dîsan kema-niyên olî weke xirîstiyan, aşûrî, ermen, êzidî… uhw di nava xwe de hembêz kirin e, ev hemû faktor û gelek faktorên din hene ku Amerîka di vê demê de ne mimkûn e pişta xwe nede kurdan li Sûriyê.

Amerîka dê hewil bide herdû aliyên kurd û tirk ji pêkanî-na sedî sed ya armancên wan dûr bixe, ne destûr dide kurd li Bakurê Sûriyê bibin dewlet, ne jî dihêle kurd li Sûriyê bê maf bimînin, di dawiya dawiyê de li nîva rê ew ê bigihên hev.

Bi dîtina min porsêsa nêzîk kirina herdu aliyan di demek nêzîk de pir zor e, ew ê ev pirs bi lawazkirina DAIŞ'ê bi giştî û li Sûriyê bi taybetî pêvajoyek din bê destpêkirin. Îcar dê qunaxa li-hevhatina hêzên navxwe yên Sûriyê bê dan, mebesta min Artêşa Azad, Hêzên Sûriya Demokrat di nav de YPG/PYD.

Qonaxa siyan piştî zelakirina rewşa Esad li ser desthilatê dê bikeve rojevê kanê şêwazê desthilatê li Sûriyê dê çawan bibe û heta çi ast ew hêzên binakok dê nêzîk hev bibin.

Destêwerdana Tirkiyê û mana wê di xaka Sûriyê de heta astek bilind dê girêdayî rewşa navxwe ya Tirkiyê be. Ez ne di wê baweriyê de me ku faktorên sebecektîv û herwiha yên obcektîv di berjewendiya Tirkiyê de bin. Erdoğan çawa mecbûrî xwe çemandina li hember Rûsya, Esad û Îranê bû ew ê wiha mecbürî dialoga bi kurdan re bibe.

Lê ji bo kurdan PYD/YPG jî, wiha asan nabe, zehmetiyên pir giran li pêşiya wan hene, ji aliyê siyaseta navxwe ya Sûriyê, ji aliyê siyasta têkiliyên bi Amerîka û Rûsya û herwisa têkiliyên wê yên bi grûpên din yên Sûriyê de.

Aliyê herî giring jî PYD/YPG heta çi ast dê serkeftî be di navbera hêzên kurd de reyek aştiyê û lihevhatinê peyda bike.

# 'DYA dev ji kurdan bernede'

**Dr. Îbrahîm Malazade: YPG karîgertirîn hevpeymanê DYA'yê ye**

DYA li gor berjewediya xwe diçe, û berjewendiya DYA'yê wê gavê jî jinavbirina DAIŞ'ê ye. Ji ber wê çendê mumkin nîne niha DYA dest ji YPG'ê berde, lewre tu hêzên din nikarin mîna YPG şerê DAIŞ'ê bikin. Lê mumkîn e ev pêwendî stratijîk nebe, em niha wê yekê nizanin. Ev dikeve ser milê PYD ku çawa dikare li parsengên hêzên deverê mêze bike. Ku bi nerîna min heta niha pêwendiyên wan bi DYA'yê re serkeftî ne.

DYA ji pevçûna serbazî di navbera Tirkiyê û YPG'ê de nerazî ye û ne dilxiweş e. Niha ji pêwendiya welatên rojava bi Tirkiyê re ne baş e û em dizanin ferqa hinek milîşîyên havpeyman yê Tirkiye digel DAIŞ'ê tuneye. Me hişdariya Frensa û hinek welatên din ji dîtin ku ji Tirkeyê dixwazin şerê xwe bi YPG'ê re rawestîne. Ez wiha dibînim ku di na-vbera DYA – PYD'ê de diyalog berdewam dikin. Heger PYD û YPG'ê jî wekî bala serbazî ya PYD bikaribin ji armancên DYA têbigêjin, wê pêwendiyên wan pêşve biçin. Li gorî çavdêran, êdî Sûriya venagere rewşa berê û dabeşbûn li ser her esasekî dê bibe çarenûsa Sûriyê. Ji ber wê çendê pêwendiyên DYA û PYD'ê wiha bi hêsanî bi dawî nabe. Vê gavê PYD baştirîn, karîgertirîn û rêkxistîtirîn havpeyman ji bo DYA'yê di wê qonaxê da ye.

**Pispor Elijah Magnier: Erdoğan û Pûtîn li hev kirin**

Hevdîtina Erdoğan û Pûtîn li bajarê Rûsyayê St. Petersburgê, di navbera Tirkiye û Rûsya peymana ku hêzên Tirkiyê li Sûriyê derkevin qadê û di bingeha hinek garantiyan ji bo berjewendiyên her dû aliyan jî dê xizmetê bikin hat erêkirin. Li ser plana DYA'yê ku Sûriyê perçe dike û li bakurê Sûriyê hebûna xwe ya mayînde pêk bîne û bi saya wan ku li Rojava kurd wê dewletê ava bikin wê çawa pêşiya wê bê girtin hat nîqaşkirin. Ancax Tirkiyê îtîrazên di aliyê xweferzkirinê de xwe bi hêz dît û tesîra hewldana derbeyê ku pêk nehat mezin bû. Haya Rûsyayê jê hebû ku YPG piştî ku DAIŞ'ê têk bir û Menbic azad kir dê berê xwe bida Cerablûsê û Azazê. Enqereyê jî xwest li ser sînorê xwe DAIŞ'ê tune bike û xwe li ser wê yekê ferz kir ku kurd li ser sînorên wan xetekê ava nekin. Rûsyayê jî hêzên kurdî ku bi daxwaza DYA'yê li Hesekê berê xwe dabûn Artêşa Sûriyê û dixwestin wan vala derxin, ji wê sedemê Rûsya mûdaxaleya Tirkiyeyê ya hêzên kurdan qebûl kir. Lewra ew eşkere dikir plana DYA'yê ku dixwest Sûriyê perçe bike. Kurdan pênc salan bi alîkariya Şamê tehm jê derdixistin û raperînê beyhûde nedidîtin û wan perçeyeke wek perçebûna Sûriyê didît. Kurdên Sûriyê divê nebin alet. Dema Sûriye perçe bibe bi rewşeke munasîb statûya xwe bi cih bikin.

Tirkiyeyê nîşan da ku dikare polîtîkayên xwe yê li dijî Beşar Esad biguherîne. Li gel wê guherîna taktîkî, lê ji bo Rûsyayê yên xwedî erk gelê Sûriyê ne.

**Rojnameger Fehim Taştekin: Wê DYA dev ji YPG'ê bernede**

Ji ber çend sedeman pêdiviya Amerîkayê bi kurdan heye. Amerîka hem dixwaze di qadê de bimîne û hem jî dixwaze paşeroja Sûriyê diyar bike. Herwiha Amerîka dixwaze di şera li dijî DAIŞ'ê de bibe hêza herî mezin û dixwaze ji vê têkoşînê encameke baş bi dest bixe. Ji bo wan hemûyan pêdiviya wê bi kurdan heye û dest ji kurdan bernade. Amerîka ji bo biryardayîna paşêroja Sûrîyê û hem jî ji bo têkoşîna li dijî DAIŞ'ê û hem jî ji bo berjewendiyên xwe gelekî alîkariya Hêzên Sûriya ya Demokratîk (HSD) kir. Ji ber vê dest ji YPG'ê dê bernede. Lê belê Tirkiye jî endamê NATO'yê ye û Amerîka ji bo Tirkiyê aciz neke, dibe ku hin tiştan bike. Ji ber vê ji serî ve Amerîka di hevkariya kurdan de carînan paş ve çû û carnan jî pêş ve hat. Li dijî kurdan her-tim vê taktîkê bi kar tîne. Sedema vê jî Tirkiye ye. Amerîka naxwaze hevaltiya xwe bi Tirkiyê re xerab bike. Heger ji Amerîka pirsin, 'Tu yê Tirkiyê hilbijêrî yan kurdan?' Amerîka naxwaze pirsek wisa jê bê ki-rin. Heger bê kirin jî ew ê Tirkiyê hilbijêre. Ji ber ku hevalê wê yê berê ye û ji aliyê erdnîgariyê ve jî Tirkiyê ji bo Amerîkayê gelekî girîng e. Helbet kurd jî wê rastiyê dizanin û sedîsed pişta xwe nedane Amerî-kayê. Berê gelek dewlet û hêzên navnetewî piştevaniya kurdan kirin. Lê piştre jî ji bo berjewendiyên xwe kurd bi cih hiştin. Heger sibê tiştekî din hewce bibe ew dê kurdan ji bîr bikin. Lê divê Amerîka niha ji bo berjewendiya xwe hem piştevaniya kurdan bike û hem jî li kêleka Tirkiyê bisekine. Ji ber vê kurd li wê derê dibin aktoreke girîng. Rûsya jî naxwaze kurd li herêmê girîngiya Amerîkayê zêde bike. Loma Rûsya bi hin rêbazan alîkariya kurdan dike. Rûsya hertim xwestiye ku kurd li cem wê bibin.

**Rojnameger Sirwan Kajo: Peywendiya DYA û PYD'ê li ser şer e**

Ez bawer nakim ku Amerîka piştevanîkirina YPG'ê rawestîne. Ji ber ku şerê DAIŞ'ê hîn jî didome û pêwistiya Amerîka bi hêzeke weke YPG'ê heye ku bi şert û merc ji bo Amerîka şer bike. Îcar ez zor dibînim ku ew heger hebe. A duyem jî ew e ku heta radeyekê rast e. Ew vekişîna Hêzên YPG'ê ber bi rojhilata Çemê Firadê ve ne taktîkekî rast bû. Lê di heman demê de diyar e siyaseta Amerîkî heta dawiyê piştgiraya kurdên Rojava nake. Em vê dizanin. Piştgireya ku dide YPG'ê di çarçoweya leşkerî de dimîne. Heta niha PYD wekî partiyek siyasî nehatiye pênasekirin. Tenê di çarçoweya ewlekarî û leşkerî de û şerê dijî DAIŞ'ê de dimîne. Lê niha li ser erdê hinek hevsengî hatine guhertin. Dîwanên nû hatine sazkirin. Bi taybet piştî ku Rûsya bi şêweyeke eşkere dosyaya anî ber destê xwe li Sûriyê rola Rûsya mezin e. Piştê Operasyona Cerablûsê û ketina Tirkiyê hevsengiyên xaka Sûriyê dê bên guhertin. Dibe Amerîka YPG û Tirkiyê bîne ser maseya diyalogê. Ew hîn mimkin e û hem jî ne mimkûn e. Ji ber ku pêwistiya Amerîkayê bi YPG'ê heye. Amerîka naxwaze di nav kurdên Rojava de hêzekî siyasî rewa bike. Ez bawer dikim ku bi ser asta îstîxbaratî dê gelek hevdîtin çêbibin û ew agirbesta ku hat ragihandin tevî ku Tirkiyê red kir tiştekî wilo hebe û şera YPG di nav axa Sûriyê de berdewam bikin. Ez dîsa dibînim ku Amerîka karibe navbeykariyekê di navbera herdu aliyan de bike, di çarçoweyekê de li ser erdê terazo û balansek hebe. Heger xetera DAIŞ'ê nemîne, dê gelek tişt bên guhertin. Heger şer bi dawî be têgihiştina di nav Amerîka û YPG'ê de jî were guhertin.

**Rojnameger Faruq Haci Mistefa: DYA'yê dest ji YPG'ê bernedaye**

Bi rastî hate xuyakirin ku Amerîka dest ji YPG bernedaye û bernade. Biden dixwest Cereblûsê bi Fethullah Gülen re biguhere. Yanê li cem hikûmeta Tirkiyê, Gülen ji Cireblûsê mihimtir e. Amerîka zûbizû dest ji YPG'ê bernade. Heta niha Amerîka milbimil li kêleka HSD'ê li Minbicê ye û di eniya pêş de ye jî. Lêbelê çawa Amrîka dest jî YPG berde. Ji ber ku PYD'ê xizmeteke mezin ji wan re kiriye. Lê wisa xuya ye ku ev mijar di navbera Amerîka û Tirkiyê de dibe kêşeyeke mezin.

Herwiha Amerîka dixebite ku hêzek Sûriyê ji YPG û HSD û hêza Artêşa Azad li başûr û rojhilatê Sûriyê çêke. Di navbera van hêzan da diyalog heye. Lê divê Amerîka hewl bide ku diyalogeke kurdî-tirkî çêke lê mixabin heta niha ev projê nehatiye rojevê.

**Rojnameger Mutlu Çiviroğlu: DYA'yê kurd nefirotine**

DYA kurdan nafiroşe lê bi Tirkiyeyê re jî berdewam dike. Ez dibînim ku hikûmeta Tirkiyeyê dibêje, 'Ya em ya PYD' dîplomasî ne reş û spî ye gelek tonên wê hene. Carînan kurd jî dikevin xeletiyeke wisa, DYA û Tirkiye mûttefîqên hev in û wan têkiliya wisa rihet çênabin. Li hêla din siyaseta ku DYA li Sûriyeyê dimeşîne li gor YPG û HSD'yê ku pêşengtiya wan dike re girêdayî ye. Pentagon ji wê têkiliyê pir bi baw-er e û ji bo berjewendiyan zemînê amade dike. Lewra vê têkiliyê di her aliyê de bi serkeftinê derket, tecrûbeyên li qadê wî nîşan dide. Dema ku em li daxuyaniyên DYA'yê dinêrin ku meyla DYA'yê li ser kurdan e. Bêdengkirin çekan bi navbeynkariya DYA'yê dibe. Di encamê de agirbesta li wê derê heye tê dîtin ku li berjewendiya kurdan e. Li gor agahiyên ku min bi dest xistine wê operasyon ber bi başûr ve dewam bike û ew ê jî Tirkiyê bike hefsê. Di encamê de Cerablûs ne ciheke stratejîk e. Niyeta sereke ber bi başûr ve çûn e, hêzên çekdarî ber bi Menbicê ve şandin e. Tirkiye û hêzên çekdarî ku Tirkiye alîkariya wan dike berê xwe dane başûr ew jî nîşan dide ku berê wan li Menbicê ye. di 70 'ê rojan de DYA'yê, koalîsyonê dem û xerckirina wan ya çav-kaniyan û bi hewldana YPG'ê hat rizgarkirin. Niyeta wan komên çekdar ne ku bi DAIŞ'ê re şer bikin e. Armanca wan ya sereke êrişkir-ina kurdan e.

## TEV-DEM

**Berdevkê TEV-DEM'ê Aldar Xelîl: Em hevpeymanên DYA'yê ne**

"Heta niha kesekê şoreşek bi vî rengî ava nekiriye. Me xweseriya xwe ava kir, hêzên xwe rêxistin. Pêwendi-yên me bi Hêzên Hevpeymanê re heye û serê wan jî DYA dikşîne. Ji bo şerê DAIŞ'ê em di hevpeymanê de ne. Hêj hevpeymana me didome. Ev hevpeyman heta niha jî di astekî baş de ye. Hin caran rewşên aloz çêdibin, ew mijarekî cuda ye. Ji milekê ve jî em dixwazin vê bibêjin; pêwendî xirab bibin jî dîsa em ê hêza xwe, şoreşa xwe bidomînin. Me cihê xwe girtiye. Pêwendiyên me bi Rûsya, DYA û hêzên din re hene. Sîyasetekî me heye. Em ne dijî kesekê ne, ne jî pey kesekê diçin. Sîyasetekî me, xeteke me heye. Me xwe bawer e û fikrên xwe jî beyan dikin."

**Wezîrê Parastina Kobanê Îbrahîm Kurdo: Peywendiyên me didomin**

"Em û Amerîkayê em hevpey-manên hevdu ne. Peywendiyên me bi hemû hêzan re baş in. Tirkiyê me dike armanc. Aniha jî Tirkiye li Kob-anê êrîşî me kir. 2 sivîlan jiyana xwe ji dest dan. Em hêza xwe ji gelê xwe distînin. Em bi hêza gelê xwe hene. Peywendiyên me yên bi hevpeyman-an jî re berdewam dikin."

## ENKS

**Serokê ENKS'ê Brahîm Biro: DYA alîkariya leşkerî dide YPG'ê**

Ji bo rizgarkirina hin deverên di destê DAIŞ'ê de, DYA'yê alîkariya leşkerî dida YPG'ê. YPG'ê bawer nedikir ku rojekê hin aliyên din jî dê bên ser vê xetê. Sûriye, Îran, Hîzbûllah, gelek çekdarên şîe hene û PKK xwe jî heye. Aniha Tirkiye jî kete nav. Li herêmê alîkariya DYA'yê ji bo YPG'ê wê kêm bibe. Ji bo rizgarkirina hin deveran hêj pêdiviya DYA'yê, bi PYD/ YPG'ê heye. Tirkiye mercan datîne ser DYA'yê ku alîkariya YPG'ê neke.

Dema ku DYA ji YPG'ê re alîka-riyê dişîne rejima Sûriyê aciz dibe. Sûriye ji aliyekî dibêje, 'PYD'ê hûn hevpeymanên me ne' û hez nake PYD ji Sûriyê bêhtir nêzî aliyekê bibe û ji ve yeke aciz dibe. Dema ku PYD'ê pêwendiyên xurt bi ali-yan re danîn rejimê jê re nameyan dişîne û dibêjê, 'Sûriye dikare Rojava kontrol bike' û herêm tund dibe. Ev yeke PYD'ê mecbûr dihêle ku vegere ser tifaqa xwe ya bi rejimê re.

www.arsivakurd.org



M. Emin Kan

### Nûnerên Partiyên Bakur:

# Tirkiye naxwaze heremê kurdan bigihên hevdû



24'ê Tebaxê Tirkiyê Operasyona Cerablûsê da destpêkirin û hêzên artêşê bi tank û topan derbasî nav bajarê Cerablûsê bûn. Li kêleka hêzên Tirkiyê, çekdarên opozîsyona Sûriyê jî tevlî şer bûne. Bajarê Cerablûsê ku ji aliyê DAİŞ'ê ve hat valakirin, bi alîkariya hêzên Tirkiyê ket bin kontrola Artêşa Azad.

Serokkomar Recep Tayyip Erdoğan derbarê Operasyona Cerablûsê de gotibû: "Bi hema-hengiya Hevpeymaniya Navnetewî Opera-syona Cerablûsa ya ku 24'ê Tebaxê destpê kir, rengvedana biryardariya me ye. Operasyonên me heta rêxistinên terorê yên weke DAIŞ, PKK û şaxa wê ya Sûriyê YPG ji welatiyên me re bibin tehdîd wê bidomin."

Piştî ku hêzên Artêşa Azad derbasî Cerablûsê bûn, berbi başûrê bajêr ve çûn û di navbera wan û YPG'ê de pevçûn derketin. Artêşa Tirkiyê jî bi topavêjan alîkariya hevpey-manên xwe kirin û li hinek gundên derdora Menbîc û Cerablûsê di nav de sivîl jî çendîn kesan jiyana xwe ji dest dan. Li ser pevçûna Artêşa Azad û YPG'ê Berdevkê Wezareta Parastina (Pentagon) Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA)'yê Peter Cook ragihand ku rûbirûbûna Artêşa Tirkiyê û Yekîneyên Parastina Gel (YPG) cihê nerazîbûnê ye û ne bi dilê wan e.

Rawêjkara Wezareta Derve ya Rûsyayê Mari-ya Zaxarova jî li ser operasyonên Tirkiyê yên li xaka Sûriyê de destnîşan kiribû ku divê Enqere operasyonê bi Şamê re di nava hemahengiyê de pêk bîne û ji êrîşa ser kurdan û komên muxalif neke. Nûnerên welatên Ewropayê û Îranê jî bang li Tirkiyê kirin ku ligel DAIŞ'ê şer bike û êrîşî YPG'ê neke.

Tevgera leşkerî ya li heremê siyasetmedarê Bakurê Kurdistanê jî kiriye nav endîşeyan. Nûnerên partiyên amaje dikin ku armanca Tirkiyê ne şerê DAIŞ'ê ye û dixwaze rê li ber pêşkeftina kurdan bigre û nehêle ku heremên kurdan bihevre bên girêdan

**'DAİŞ hincet e, armanc kurd in'**

Serokê PAK'ê Mustafa Özçelik di derbarê mi-jarê de dibêje, Tirkiyê dixwaze rê liber korîdora kurdî bigre. Li gor Özçelik, Dewleta Tirkiye di mûdaxaleya xwe ya Cerablûsê de, DAIŞ'ê weke sedem nîşan daye, lê dewleta Tirkiyê pir aşkere dibêje, 'em rê nadin ku li Bakurê Sûriyê ti dewletên etnîkî werin damezrandin. Em ê wê xeletîya ku me li Bakurê Iraqê kirîye, li wir dubare nekin.'

Li gor Serokê PAK'ê sebeba esasî ya dest-werdana Dewleta Tirkiyê ev e. Özçelik dibêje 'dema ku diyar bû êdî DAIŞ dê nikaribe Cerablûsê biparêze, û bajêr bikeve destê PYD'ê, Tirkiye ev yek ji bo xwe weke xetereke mezin dît.' Li gor Özçelik eger Cerablûs bikeve destê PYD'ê dê rêya yekkirina axa Rojavayê Kurdis-tanê jî vebe. Gihandina heremên Rojava jî dê hem rêya xwedî statûbûyina kurdan, hem jî rêya gihîştina Derya Spî xurttir bike.' Özçelik bawer dike ku Dewleta Tirkiye ji bo rê li ber vê yekê bigre, mûdaxaleya Cerablûsê kiriye.

**'Tirkiyê li dijî DAIŞ'ê şer nekiriye'**

Serokê ÖSP'ê Mesut Tek, di hevbîr e li gel Özçelik û dibêje 'armanca Tirkiyê ne DAIŞ e YPG'e ye.' Li gor Mesut Tek, armanca sereke ya Operasyona Cerablûsê pêşîlêgirtina pêşveçûna hêzên kurd e. Tek wisa dibêje: "Her çend digotin em li dijî DAIŞ'ê şer dikin lê wîsa derket ku ew ne rast e. Rayedarên tirk eşkere gotin ku em tenê ne li dijî DAIŞ'ê herwiha YPG'ê jî di hedefa me de ye û em nahêlin derbasî rojavayê çemê Firadê bibe." Li gor Tek, dema YPG û hevpeymanên YPG'ê Menbic rizgar kirin û ber bi aliyê Cerablûsê ve çûn wê demê Tirkiyê bi hinceta êrişa DAIŞ'ê ya Dilokê mûdaxeleyê her-emê kiriye. Tek dibêje rewş wek ku rayedarên Tirkiyê dixwazin nîşan bidin, nîne. Li gor wî li Cerablûsê tu fîşekeke DAIŞ'ê nehatiye teqandin û Tirkiyê li dijî DAIŞ'ê şer nekiriye.

**'Ev operasyon ji tiştekê re derman nîn e'**

Serokê Hak-Par'ê Refik Karakoç jî dibêje Tirkiye naxwaze kurd mafên xwe bi destbixin. Li gor Karakoç, sedema êrişa Tirkiyê ku wek DAIŞ tê nîşandan ne rast e, û sedema esasî ew e ku Hikûmeta Tirkiyê naxwaze gelê kurd li wê derê mafên xwe bistînin. Karakoç, dibêje divê demildest ev operasyon bên sekinandin û artêşa Tirkiyê vegere ser axa xwe. Karakoç balê dikşîne ser daxuyaniyên Amerîka û Rûsyayê jî ku wan dewletan gotibûn divê artêşa Tirkiyê êrişî gelê Sûriyê û hêzên kurd neke. Serokê HAK-PAR'ê dibêje ew baş dizanin ku armanca Tirkiyê ya yekemîn kurd in, naxwazin gelê kurd bigihijin mafê û ew helwestan wan xelet û ne rast e.

**Karakoç bang li Hikûmeta Tirkiyê dike ku ji axa Kurdistana Sûriyê derkeve û ev operasyon ji tiştekê re derman nîn e.**

Serokê PDK Bakûr Sertaç Bucak ji di wê baweriyê de ye ku Tirkiye naxwaze korîdora kurdî pêk were, ji ber ku ew bi guman in ku ew korîdor wê ewlekariya wan bike bin xeterê. Li gor Bucak, Tirkiye pêşiyê gotiye ew ê şerê DAIŞ'ê bike lê piştre ew mesele hatiye jibîrkirin.

**'PDY jî yekîtiya kurdan qebûl nake'**

Li gor dîtina Serokê PDK-Bakûr, nexwestina korîdora kurdî xuya dike ku Tirkiye li nav sînorê welatekî din jî li dijî meseleya kurd e. Lê belê ew vê yekê napejirînin ji ber ku ew mesele ya hemû kurdan e. Bucak, rexne li PYD'ê ji dike û dibêje siyaseta PYD'ê ya li Rojava dixwaze bi tena serê xwe desthilatdar be. Bucak wisa berdewam dike: "Eger yekitiyeke kurdan li Ro-java hebûya dibe ku Tirkiyê îro nikaribû wî tiştî pêk bîne. Ji ber ku Tirkiye endamê NATO'yê ye û pêwendiyên wan jî li gel Amerîkayê bi salan e berdewam e û partnereke stratejîk ê Amerî-kayê ye. Ez dibêjim eger ew mesele dirêj be wê demê dê Amerîka piştgiriya Tirkiyeyê bike, ji ber ku Tirkiye dewlet e û hevpeymanê wî ye. Li Rojava jî PYD tenê dixwaze her tiştî bi serê xwe çêbike, yekîtiya kurdan qebûl nake û hatina Pêşmergeyên Rojê qebûl nake."

**Nakokiyên navbera Başûr û Rojava Serokê ÖSP'ê Sinan Çiftyürek armanca Tirkiye digîjîne kontrolkirina xeta Cerablûs û Azazê.**

Li gor Çiftyürek du hesabên Tirkiyê hene. Armanca sereke ya Tirkiyê girtina xeta Cera-blûs û Ezazê ye. Ew balê dikşîne ser gotinên rayedarên Amerîka û Tirkiyeyê ku gotibûn wan li ser mijarê li hev kirine ku Menbîc bi destê YPG û HSD'ê ve bê rizgarkirin û paşê YPG vegere Rojhilatê Firadê. Çiftyürek wisa dibêje: "Îro Tirkiyê israr dike. Tê gotin ku Amerîka jî carcaran tesîrê li ser YPG'ê dike ku divê şer di navbera wan de çênebe û vegerin. Tirkiyê pirsgireka kurd û Kurdistanê dixwaze bikşîne Rojava. Li gorî me her çiqas astengî hebin jî kurdên me, partî û rêxistinên me herî zêde li Başûr û li ser xeta Rojava ye. Em hêvîdar in ku nakokiyên navbera Başûr û Rojava de rabin. Heger îro ranebe, wê çi wext rabe? Hêviya me ew e ku xeta Rojava jî tesîreke erênî li ser Başûr çêdike. Her du jî nakokiyên xwe ji hole rakin tesîrek erênî dê li ser Başûr û YPG'ê durist bibe. Ya duyem jî li gorî min Tirkiye nikare zêde wî şerê bidomîne. Ji ber ku Îran ji ber vê yekê acisiya xwe aniye ziman, Rûsya jî acis e. Îran û Rûsya ev tişt weke peyamekê dane YPG'ê ji ber ku ew nêzîkî Amerîkayê bûye."

**'Li Sûriyê ti hiqûq nîne'**

Parlementerê HDP'ê ya Amedê İmam Taşçıer îddîa dike ku dinya jî li dijî vê siyaseta Tirkiyê ye. Li gor Taşçıer, meseleya Cerablûsê ji zûde ve heye û rayedarên tirk dixwazin serkeft-inên kurdan li wê derê bifetisînin. Mebûsê HDP'ê bawer dike ku ketina Cerablûsê jî bi zorê bû û dest dane ser wê. Li gor Taşçıer, tu hiqûqê Sûriyê tune ye, ji ber vê yekê wê mesele tenê bi Cerablûsê nemîne û zêdetir bibe. Taşçıer wiha dibêje: "Ji destpêka şerê Sûriyê heta niha jî 5 sal in armanc ew e. Dewleta Tirkiyê li Antartikayê jî serkeftinek kurdan hebe, ew ê li hemberê wê bisekine. Leşkerên ku ketine wê derê dê birevin. Ji ber ku dinya jî li hemberê wan e. Yanî li hemberî Tirkiyê ye. Dawiya Erdoğan jî bibe wek dawiya Saddam Husên. Ji ber ku dinya ji Sadddam re musade kir ku bikeve Kuweytê û dawiyê ji wî re gotin,'tu çekên kîmyewî çêdikî' û wî sûcdar kirin."

**'Tirkiye ji mêjve herema tampon dixwaze'**

Li gor Serokê PDK-T Mehmet Emîn Kardaş jî Tirkiye dixwaze herêmeke tampon ava bike. Kardaş dibêje, Tirkiyê ji dema ku şerê Sûriyê dest pê kiriye heta niha dixwaze di navbera Tirkiye û Sûriyeyê de herêmeke tampon çêbike. Serokê PDK-T'ê Kardaş dibêje, heta îro Amerîka rê û derfet nedaye tirkan ku bikevin vê herêmê. Kardaş wiha berdewam dike: "Mûşekan ku ji aliyê Sûriyeyê ve dihatin avêtin û diketin nav sînorê Tirkiyê jî, ji xwe re wek derfetek dîtin û gotin 'em ê leşkeran bişînin.' Çûna leşkerên tirk ku hinek kes dibêjin tirk ketin nav heriyê, ez ne di wê baweriyê de me. Şerê ku heta niha hatiye kirin hemû li ser axa kurdan e , lê yên ku herî zêde sûdê werdigire artêş û dewleta Tirkiyê ye. Tê gotin ku di navbera PYD'ê û dewleta Tirkiyê de agirbest hatiye îlankirin, ew jî ne di berjewendiya PYD'ê de û ne jî di berjewendiya dewleta Tirkiyê de ye. Lewra PYD, Amerîka, Fransa û Rûsya jî ti carî armancake wan ya li Bakurê Sûriyê kurd bi serkevin û dewletek avabikin an jî rêx-istineke çêbikin, perçeyeke azad bikin tunebû. Armanca wan ew bû ku şerê rejîmê bikin, şerê DAIŞ'ê bikin. Kurd ji xwe re kirin leşker û çekan dişînin ji wan re."

BasNûçe 05 - 11 Îlon 2016


### Îran bo aştiya aliyan navbenkar e

# YNK dibe du beş

Siwar Bedirxan

Rojeva sereke ya li Herêma Kurdistanê (RHK) niha vegeriya bû qeyrana navxweyî ya Yekîtîya Niştimanîya Kurdistanê (YNK). YNK bi awayeke fiîlî bû du beş.

Sekreterê Giştî yê YNK'ê Celal Talebani di 18 Kanûnê 2014'an de nexweş ketibû û piştî nexweşiya wî di hundirê YNK'ê de di warê siyasetê de îstiqrara sîyasetê nemabû. Rêxistin li aliyekî; Endamên Po-lîtburoyê Jina Celal Talabani Hero İ. Ehmed, Mele Bextiyar, Cihgirên Sekreterên Giştî, Sadî Pirê û li aliyê din; Kosret Elî Resûl, Dr. Behram Salih û Endamên Polîtburoyê Cafer Şeyh Mustafa, Kadir Hemecan, Mahmûd Sengawi, Rizgar Elî, Erselan Bayiz û Azad Cundiyanî de bû du beş.

Cihgirên Sekreterê Giştî yê YNK'ê Kosret Elî Resûl û Dr. Behram Sa-lih ji bo çare-serkirina qeyrana siyasî ya YNK'ê di navbera hefteyê de deklerasyonek ragihandin. Di deklerasyonê de ragihandin ku ji bo is-tiqrarê "Navenda Biryardanê" hatiye damiz-randin û wê hemû biryar di vê navendê de dê bên girtin û divê hemû endam rêz li biryaran bigrin.

Çavdêr diyar dikin ku Kosret Elî Resûl û Dr. Berhem Salîh derbarê rapirsîna referandumê û pêwendiyên xwe yên bi partiyên siyasî yên RHK'ê de helwesteke diyar nîşan nadin û ji ber ku çavkaniyên aboriya YNK'ê di destê wan de ye li dijî wan derdikevin. Pisporan dan zanîn ji ber ku bi peymana Goranê re walîtiyên Sileymaniyê û Helepçeyê jî bêqanûn di nava Goran -YNK'ê pêk hat nerazîbûn bi gelek endaman re çêkiriye. Herwiha pispor, amaje li ser wê yekê kir ku YNK'ê de qeyrana siyasî derketiye û ji ber vê jî mimkûn e YNK ji hevûdû veqete û wek du partî cuda bibe.

Li dijî helwesta herdu cihgirên Sekreterê Giştî yên YNK'ê, komek di bin serokatiya Hero İ. Ehmed, Mele Bextiyar û Sadî Ehmed Pîre li mala Celal Talabanî kom bûne û danezanek ragihandine. Ji aliyê din ve hat zanîn ku Serokê Tevgera Goranê Newşîrwan Mistefa ji bo çare-serkirina qeyrana YNK'ê amedekariye dike û ji Tevgera Goranê desteyek amede kiriye ku her du aliyên YNK'ê re hevdîtinan pêk bî-nin. PDK jî ji endamên xwe re qedexe kiriye ku derbarê rûdanên YNK'ê de neaxivin. Serokê RHK'ê Barzanî jî li pişt perdeyê ji bo çare-serbûna qeyrana YNK'ê û rêkeftina endamên wê hewl dide.

### Ji Dr. Berhem Salih û Kosret Resûl danezan

Sekreterên Giştî yê YNK'ê Dr. Behrem Salîh û Kosret Resûl derbarê gendeliyên rêxistinê, têkoşîna li dijî DAIŞ'ê, betalbûna kongreyê û pasîvbûna endamên Polîtburoyê de danezanek rexnegirî ragihandin. Di danezanê de wisa hat gotin: "Ji aliyek li Herêma Kurdistanê qeyra-nê siyasî û aborî heye û ji aliyê din vê jî li dijî DAIŞ'ê têkoşîn. Ji aliyekê li Herêmê rûdanên girîng pêk tên, ji aliyê din ve xelk di nav feqîriyê de dijîn. Di vê serdema dijwar de ji ber hin endamên YNK'ê ku xwedî erk in, daxwazên gel û dadê pêk naynin. Di serî de neft û hemû siruşt û samanên welêt tên talankirin û xelk birçî ye. Biryarên siyasî yên ofîsa Mam Celal, Konseya Serokatiyê û Polîtburoya derbasbûna xwe winda kirine."

Di berdewamiya danezanê de rewşa siyasî ya RHK'ê jî hatiye nirxandin û wisa tê domandin: "Heta niha ji bo rêzlêgirtina Birêz Mam Celal, malbatên cangorî, xazî û Hêzên Pêşmerge û ji ber rewşa siyasiya RHK'ê û YNK'ê ji bo ciyawazî xurt nebin, me hewl da ku kêşeyan bê şîdet çareser bikin. Tevî ku me ewqas sebr kir, ji aliyê vê komê ve rasterast yan jî nerasterast bi polîtîkayên xwe yên xelet siruşt û samanên xelk talan kirin û mûçeyên gel birrîn û wan polîtîkayên xwe yên xelet rojbiroj xurttir dikin. Ew kom, raya giştiyê ber bi aliyekî çewt ve dikişîne. Li Hewlerê hikûmet jî ji vê yekê zererê dibîne, pereyên neftê werdigrin, lê li Sileymaniyê hikûmetê rexne dikin. Her ku diçe yekîtiya partiyê xerab dibe û di warê rêveberiyê de kêşe hene. Endamên partiyê wek lijneya se rtewandinê bûne û teşkîlatên partiyê hatine bê fonksîyonkirin. Ew di hundirê kongreyê de hîle dikin û erkên endamên esîl yên partiyê ji destê wan digrin. Partîbaziyê dikin û di hikûmetê de kar didin malbatên xwe. Dema ku ew xeletî tên kirin, navê Mam Celal tê bikaranîn û bi vî awayî zererê didin navê wî. Em ku riya Mam Celal dişopînin, nikarin li dijî wan hemû kiryaran bêdeng bimînin. Em destûrê nadin ku wê têkoşîna me ya 41 salan, di nav destê wan de têk biçe. Em piştevaniya yekîtiya YNK'ê û çareserkirina kêşeyên wê dikin. Em daxwaz dikin ku rêyên çareserkirina kêşeyên siyasî yên YNK'ê û têkoşîna li dijî gendeliyê bên peydakirin.

### Daxuyandina Navenda Biryardanê

Di daxuyaniyê de, hat aşkerakirin ku Navenda Biryardanê, ji bo yekgirtina YNK'ê û çareserkirina kêşeyên RHK'ê hatiye avakirin û tekane berpirsyar e. "Heta kongreyê em ê Navenda Biryardana YNK'ê ragihînin. Biryarên ku ji derveyî Navenda Biryardanê tên dayîn, biryarên YNK'ê nîn in. Hêzên çekdar ên YNK'ê, bi temamî dê bi Fermandariya Giştî ya Pêşmerge ve tên girêdan. Ji bo kongreyekî meşrû û rewa dê amedekarî bên kirin. Dahatên aborî, bi avayekî zelal dê bên bikaranîn. Dê li ser peymana bi Goranê re bê sekinîn. Divê pêwendiyên bi PDK'ê û hebûn û polîtîkaya PDK'ê ya Hikûmetê, careke din ji ber çavan bê derbaskirin.

Divê girêdayî biryara mafê çarenûsa miletê bin û ber bi dewleteke serbixwe ya kurd ve rêz li biryara xelkê bê girtin. Pêdivî ye hewlekî mezin bê dayîn ku kêşeyên bi Bexdayê re bên çareserkirin. Divê di çarçoveya polîtîkaya Kurdistanê ya herêm û cîhanê de, ji perçebûnê bê dûrxistin. Ji bo dad û demokrasiyê, hevpeymaniyeke berfireh û ber-nameya reformeke piralî dê bê amadekirin û dê hewl bê dayîn ku kêşeyên siyasî, aborî û îdarî bên çareserkirin."

Li ser pengava Kosret û Dr. Berhem baska bi serpereştiya Mele Bextiyar, Sadî Ehmed Pîrê û Hero İ. Ehmed ve bi rê ve diçe, li mala Celal Talabanî civiyan û li dijî daxuyaniya Dr. Berhem û Kosret Resûl belavokek ragihand. Di daxuyaniya baska reqîb de, hat diyarkirin ku îlana Navenda Biryardanê şaş e û wiha hat gotin: "Ev biryar ji aliyê dezgehên bilind ên YNK'ê ve nehatiye pejirandin û ji ber wê jî meşrû nîne." Di daxuyaniyê de cih dane gotineke Mam Celal û wiha hatiye ragihandin: "Em ji hemû rêveberiyê dixwazin ku li ser çareseriyeke rasyonel pêk werin. Em bawer dikin ku proseya dawîn ya YNK, dê serkeftî û pêşeng be. Weke Mam Celal gotî; Çiyayê Sefin noq dibe, lê YNK nabe." Koma di bin kontrola Hero Ehmed de ji endamên Polîtburoyê ên weke Mele Bextiyar, Necmeddîn Kerîm, Adnan Muftî, Îmad Ehmed, Aso Mamend, Omer Fetah, Qadir Ezîz, Sadî Pîrê, Firad Ebdullah û Şoreş Îsmaîl pêk tê.

Li aliyê din Pêşmergeyên Heza 70'ê yên YNK'ê jî bi daxuyaniyekê bêalîbûna xwe ya ji pirsgirêkên navxweyî yên YNK'ê re aşkera kirin. Li gor daxuyaniya Hêza 70'ê ku ser bi YNK'ê ye, amaje bi vê yekê ha-tiye kirin ku fermandarê giştî yê Hêza 70, Şêx Cefer Şêx Mistefa, bi amadebûna berpirsê malbenda rêxistinî yê Pêşmerge Mistefa Çawreş serpereştiya civînê kiriye, di civînê de li gel hemû fermandarên YNK'ê yên 70, dijî teror, berevanî û beşa hawarhatinê, polîsê sînor, polîsê kareba, polîsê zîrewanê neft û gazê, lîwaya taybet a sekreteriyeta Mam Celal ku naha di çeperên şer de ne, amadebûne. Herwiha Pêşmergeyan bêalî bûne ragihandiye.

### Husênê YNK'yî: Baska Dr. Salih û Kosret kêmîne ye

Rawêjkarê Komîsyona Dadê yê YNK'ê Nezîh Hemê Husên, parçebûna endamên YNK'ê yên polîtburoyê ji BasNûçe'yê re nirxand. Husên destnîşan kir ku daxuyaniya ji aliyê Kosret Resûl, Dr. Berhem Salih û endamên din ên polîtburoyê ve hatiye belavkirin, meşrû nîne û diyar kir ku ew kesên navborî di nava YNK'ê de nûnerên komekî kêmîne ne. Herwiha Husên, ragihand ku daxuyanî şeva Mam Celal ji Almanyayê vegeriya hatiye ragihandin û ev yek jî watedar e. Hûsên wiha got: "Şeva Mam Celal ji Almanyayê vedigeriya pêwîst bû hemû endamên YNK'ê pêşwaziya wî bikin. Dr. Berhem û Kosret Resûl daxwaza reformê dikin. Ev ji bo hevrêyên Mam Celal helwestekî kêrhatî nîne. Em vê yeke rexne dikin."

Husên, behsa daxuyaniya baska Hero Î. Ehmed û hevalbêndên wî jî kir û diyar kir ku ev bask li mîrata Mam Celal xwedî derdikeve. Husên da zanîn ku YNK ji bo kêşeyên RHK'ê yên aborî û siyasî dixebite û berxwe dide. Husên, destnîşan kir ku baska Hero Î. Ehmed koma mezin e û vê komê di daxuyaniya de tesbîtên rasyonel kirine. Husên, îdiayên li ser parçebûna YNK'ê jî red dike: "YNK partiyeke 41 salî ye, gelek astengî derbas kirine. Di nava YNK'ê de hemû deman mûxalefeta navxweyî çêbûye, niha jî peydabûna muxalefetê asayî ye. YNK dê vê krîzê jî derbas bike."

### Endamê YNK'ê Cundiyanî: Ev pêngava ji bo reformê ye

Endamê YNK'ê Halgurd Cundiyanî jî derbarê qeyrana siyasî ya YNK'ê de ji BasNûçe'yê re axivî û da zanîn ku tevgera ku Dr. Salih û Kosret destpê kirine, reform e. Divê YNK kêşeyên gel çareser bike û li dijî gendeliyê têbikoşe. Helwesta Kosret û Dr. Salih ji bo paşeroja welêt û istîqrara YNK'ê ye.

Endamê YNK'ê gotibûn ku ji peymana Goranê aciz in û ev peyman qeyranê xurttir dike. Cundiyanî bal kişand ser wan gotinên endamên YNK'ê û axaftina xwe wisa domand: "Rast e ku hin endamên Polîtbu-ro û teşkîlatê ji ber peymana Goranê aciz in. Heger wisa berdewam bike û qeyran neyê çareserkirin YNK'ê dê bibe du beşan."

### Rojnameger Wasanî: Rikeberiya aliyan ji ser daxuyaniyan didome

Rojnameger Dilşad Mustafa Wasani jî îdia kir ku qeyrana siyasî ya YNK'ê ji ber kêşeyên betalbûna kongreyê, gendelî û kontrolnekirina çavkaniyên aboriya partiyê derdikeve. Wasanî da zanîn ji ber ku bi Peymana Goranê, walîtiya Helepçeyê veguherî û jêderkên aboriyê radestî Komîsyona Aboriya nehatiye kirin, YNK'ê dibe du beşan.

### Sadî Pîre: Îran ketiye navberê

Li aliyê din Sadî Ehmed Pîre Endamê Polîtburoya YNK'ê jî ji BasNews'ê re axivî û piştîwaniya xwe bo baskê Hêro İ. Ehmed rage-hand û got: "Beyanameya wan biraderan ne rewa ye." Herwiha Pîre, destpêkê ve wek tê zanîn YNK ji sê çavkaniyan peydabûye û lê wê demê Mam Celal hebû û wî birêve dibir û diyare jî çend serkeftî bûye. Lê naha nebûna Mam Celal de ew pirsgirêkane li gel xwe derdixe. Diyar e her bi hebûna Mam Celal ve YNK'ê karî bigiha wan rojane û di xebatê de pêşde biçe." Sadî Ehmed Pîre got: "Em dibêjin ew beya-nameya ku derxistine ne rewa ye û me daxwaz kiriye civînekî rêvebe-riyê bê çêkirin û li wê civînê de pirsgirêkan em bixin pêş hev û em piştrastin di wê civînê de ew birader wê poşman bibin." Herwiha Pîre tekezî li ser wê yekê jî kir ku Îran ketiye navbera aliyan da ku navbeynkariyê bike.

### Barzanî bi Biden û Ebadî re axivî

Serokatiya Kurdistanê ragihand ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî bi riya telefonê li gel Joe Biden û Heyder Ebadî hevdîtin pêk anîn. Sero-katiya RHK'ê bi daxuyaniyekê ragihand ku di du pêwendiyên telefonî yên cuda de, Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî bi Cîgirê Serokê Amerîka Joe Biden û Serokwezîrê Iraqê Heyder Ebadî re axivî û geşedanên dawîn gotûbêj kirin. Li gorî daxuyaniyê, di pêwendiyeke telefonî de, Biden kêfxweşiya xwe li hember serkeftinên wê dawiyê yên Pêşmerge li Eniya Xazir nîşan da û pesnê qehremanîtiya Pêşmerge da.

Joe Biden serxweşî li Barzanî û kesûkarên wan Pêşmergeyan jî kir, ku di şerê li dijî terorê de bûne qûrbanî. Li gorî daxuyaniyê, Cîgirê Se-rokê Amerîkayê herwiha spasiya Obama jî gihand Barzanî û kêfxweşiya xwe li hember encamdana civînên navbera şanda Hikûme-ta Herêma Kurdistanê û Hikûmeta Bexdayê anî ziman. Di beşeke din a vê pêwendiya telefonî de, "Joe Biden hêvî jî kir, ku Barzanî bi hikûme-ta xwe wan pirsgirêkan çareser bike, ku di proseya siyasî ya herêmê de hene."

Serokatiya HRK'ê herwiha destnîşan kir, ku Serokwezîrê Iraqê Heyder Ebadî jî bi rêya telefonê bi Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî re axivî. Li gorî daxuyaniyê, di vê pêwendiya telefonî de amaje bi têkili-yên navbera Hewlêr û Bexdayê hat kirin û herwiha "Barzanî spasiya Serokwezîrê Iraqê kir, bo wê pêşwaziya germ ku li şanda Hikûmeta Herêma Kurdistanê ya bi serokatiya Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî kir." Herwiha di daxuyaniyê de hat gotin, "Barzanî şadbûna xwe li hember encamên civînan jî anî ziman û hêvî kir, ku pêwendî û hevrêziya navbera her du aliyan berdewam be." Serokatiya RHK'ê da zanîn, "Heyder Ebadî jî kêfxweşiya xwe bo serdana şanda Kurdistanê û encamên civînan bi taybet derbarê petrolê û amadekariyên bo rizgarkirina Mûsilê anî ziman û encamên civînan bilind nirxand."



Qeyrana nava YNK'ê bûye rojeva sereke ya RHK'ê. Cihgirên Sekreterê Giştî yên YNK'ê Kosret Elî Resûl, Dr. Behrem Salih li dijî baskê jina Mam Celal Hêro Î. Ehmed derketin û anîn ziman ku êdî biryarên YNK'ê ji aliyê wan ve tên dayîn. Li aliyê din, baskê Hêro Î. Ehmed jî bi daxuyaniyekê bersiva wan dan û anîn ziman ku kiryarên cihgiran ne rewa ne. Pispor û rojnameger tînîn ziman ku rêkeftina Goran-YNK'ê û gen-deliyên di nava YNK'ê de nerazîbûn bi Cihgirên Sekreterên YNK'ê re çêkirine. Herwiha amaje li ser wê yekê jî heye ku eger ev qeyran wisa bidome dê YNK'ê bibe dû beş û bi parçebûnê re rû bir û bimîne.



www.arsivakurd.org



Rêveberê Navenda Lêkolînê ya Polîtîkayên Kurdî li Washingtonê Servet Tosun

# Li Amerîka firotina kurdan ewqas hêsan nîne

"Di Newyork Times'ê de axaftineke Trump hebû ku digot 'ez heyranê kurda me, ez heyranê şervanên kurd im.' Rojnamevan jê pirsî bû; 'Tu çawa dihêlî ku tirk şerê kurdan bikin, tirk hevpeymanê Amerîkayê ne?' Wî jî gotibû; 'Ez karekê dikim ku Tirkiye û kurd bi hev re biaxifin, ji ber ku hebûna wan herduyan jî ji me re lazim e. Ew her du jî ji bo Amerîkayê re hêja ne. Eger ez bibim serok ez ê hewl bidim ku wan bînim cem hev û wan li hev bînim."

**Mehmed Salih Bedirxan**

Piştî ku Tirkiyê êrişê Cerablûsê kir û DAİŞ ji bajêr vekişiya, Amerîkayê ji YPG'ê xwest ku ew vegerin çeperên xwe yên Rojavayê Firadê û demekî ye operasyonên Pentagon û YPG'ê rawestiyan e. Ev yek bû sedemê gumanan ku Amerîka careke din li kurdan xiyanetê bike û wan tenê bihêle.

Rêveberê Navenda Lêkolînê ya Polîtîkayên Kurdî li Washingtonê Servet Tosun, dibêje, li Amerîkayê kurd ne tenê bo hikûmetê, lê bo raya giştî jî biqîmet in, û firotina wan ji aliyê hikûmetê ewçend ne hêsan e. Li gor Tosun, niha li Amerîkayê jî gelek hevalên kurdan çêbûne û di medyaya Amerîkayê û rêxistinên wir de hertim qala kurdan dikin. Civîn li ser kurdan tên lidarxistin û siyasetmedar bi erênî qala kurdan dikin. Tosun dibêje li Amerîka hikûmet û Pentagon dizanin ku eger bi carekê ew dev ji kurdan berdin dê nerazîbûna raya giştî ya xelkê Amerîkayê jî çêbibe. Wê bên rexnekirin û ji wan bê pirsîn 'gelo çima we kurd firotin?' Lewma jî weke min got firotina kurdan ewqas hêsan nîne.

Servet Tosun, derbarê miijarê de pirsên BasNûçeyê bersivandin.

**Piştî Operasyona Tirkiyê ya Mertala Firadê hevkariya, PYD/YPG'ê û DYA'yê gelekî ket rojevê. Aniha amaje li ser wê yekê heye ku DYA'yê alîkariya xwe ji ser YPG'ê biriye. Gelo mimkûn e ku DYA'yê dev ji YPG'ê berde?**

Biryareke wisa hîn sedî sed nehatiye dayîn. Û nayê dayîn jî li Amerîkayê. Ji ber ku Amerîka sîstem ne tenê bi destê hikûmetê de ye herwisa Pentagon jî karên derve û burokrasiya wir pêk tîne. Dema ku siyasetên xwe zelel dikin, planên wan demdirêj in û rojane naguherînin. Di destpêkê de dema ku Amerîka pêwendî bi kurdan re çêkir wê demê Tirkiyê jî bi awayekî veşartî alîkariya DAIŞ'ê dikir û mîlîtanên DAIŞ'ê bi alîkariyên Qeter û Erbistana Siûdî derbasî hundirê Sûriyê dikir. Li Tirkiyê ji wan re nexweşxane vedikirin. Hotelên xwe ji wan re vedikirin. Çek didan wan. Amerîkayê ji Tirkiyê re digot; 'Divê hûn sînoran bigirin û em bi hev re operasyonê destpê bikin.' Lê Tirkiyê dîlbûna çend dîplomatên xwe li Mûsilê ku ketibûn destê DAIŞ'ê dikir bihane û digot, 'ez nikarim alîkariya we bikim.' Paşê konsolosê wan hate berdan û şerê Kobanê û hin tiştên din qewimîn. Yanê Tirkiyê herdem bi bihaneyekê alîkariya şerê li hemberî DAIŞ'ê nekir. Amerîka jî ji neçarî bi kurdan re pêwendî çêkir. Ji ber ku tirkan alîkariya Amerîkayê nekir. Piştre dîtin ku kurd dikarin baş organîze bibin û dikarin baş şer bikin û polîtîkaya wan jî zelaltir bû. Amerîkiyan dîtin ku xwestekê kurdan û jiyana wan jî nêzî demokrasiyê ye û mafê jinan heye li gel wan, lewma jî wan bi kurdan re hevpeymanî û hevaltî destpêkir. Û bi vî rengî kurd bûn alternatîfa Tirkiyê. Yanê eger siberojê tirk li me guhdariyê nekin dê kurd bibin alternatîfa wan. Bi vî awayî pêwendiya Amerîka û kurdan dest pê kir. Tevî ku niha Amerîka û kurd hevpeymanên hev in lê Amerîka qala vê yekê nake û dê nebêje jî. Niha li Amerîkayê jî gelek hevalên kurdan çêbûne. Di medyaya Amerîkayê û rêxistinên wir de hertim qala kurdan tê kirin. Civîn li ser kurdan tên lidarxistin û siyasetmedar qala kurdan dikin û teqrîben ev hemû pozotîv in. Amerîka vê yekê jî berçav digire yanê hikûmet û Pentagon dizanin ku eger bi carekê re dev ji kurdan berdin dê nerazîbûna raya giştî ya xelkê Amerîkayê jî çêbibe. Û ew bên rexnekirin û ji wan bê pirsîn gelo çima we kurd firotin? Lewma jî weke min got firotina kurdan ewqas hêsan nîne. Ji aliyêkî din ve jî em dikarin bibînin kurdan tenê piştî xwe bi Amerîkayê ve girênedaye. Kurd jî dibêjin dibe ku siberojê Amerîka ji ber berjewendiyên xwe pêwendiya xwe bi me re qut bike. Kurd jî ji xwe re alternatîfan dibînin û dibêjin alternatîfa yekem xelkê me ye û daxwaza me heq e. Lewma em ji xwe bawer dikin. Wekê din jî li dinyayê û Rojhilata Navîn dewletên din jî hene ku kurd bikaribin bi wan re pêwendiyan çêbikin. Yanê kurd jî bê alternatîf nînin.

**Qeyrana sala 1991'ê rê ji bo Başûr re vekir ku ew bibin otonom û niha Amerîkayê li wir pêgehên leşkeriyê ava kirine, em heman tiştî li Rojava jî dibînin. Li gorî zanyariyên me Amerîka li Rimîlanê û Kobanê balafirgehên leşkerî çêkirine, gelo mimkûn e Amerîka bi hêsanî dest ji van pêgehan berde û ji wir vekişe?**

Em dibînin ku Amerîka hîn jî dibêje 'em yekparêziya xaka Iraqê dixwazin.' Ji ber ku dema êrişî Iraqê kirin û ewqas rîsk kirin wan dixwest ku ev der bi awayekî nedîrekt di bin kontrola wan de be. Lê eger ew welat parçe bibe îhtîmal e ji destê wan derdikeve. Dema oprasyona Iraqê jî siyaseta Pentagonê û siyaseta derve ya Amerîkayê ji bo demeke dirêj re hatibû dariştin. Tevî ku herkes dizane Iraq bi awayekî ne fermî parçe bûye lê hîn jî Amerîka dixwaze ew der weke Dewleta Iraqê bê nasîn û bi vî awayî dewam bike. Lê em dibînin ku Amerîka tiştekî bi vî rengî ji bo Sûriyê jî dixwaze. Yanê naxwaze Sûriye parçe bibe lê naxwaze ew vegere şekla xwe ya berê jî. Yanê naxwaze vegere dema ku hertişt di destê Esad bû û têkiliya wî bi Îran û Rûsyayê re hebû. Dixwze bi her awayî ew rewş di bin navê Sûriyê de bidome. Lewma jî Amerîka naxwaze welatekî kurdî li wê derê ava bike. Lê em dibînin ku siyaseta dewletên cîran yên weke Îran û Tirkiyê jî hişt ku kurd bibin xwediyê axa xwe. Hîn nebûne dewlet lê ew xwedî ax û xwedî al in. Hikûmeta wan heye û aboriya wan cuda ye. Ez di wê baweriyê de me ku biryarên dewletên Tirkiye, Îran û Sûriye dikarin wisa bikin ku Amerîka carekî din ber bi kurdan ve vegere û pêwendiya xwe bi kurdan re zêdetir bike û zêdetir alîkariya wan bike. Belkî wê demê kurd bikaribin dîsa hikûmeta xwe çêbikin û kontrola axa xwe bigirin destê xwe. Kurd jî êdî naxwazin dev ji destkeftiyên xwe berdin. Ji ber ku berê kurd li Rojava weke hereketekê bûn ku şer dikirin yan muxalîfê Esad bûn lê niha ew bi xwe jî bûne hikûmet. Ji ber ku kantonên wan, şaredariyên wan û meclisên wan çêbûne û kurd jî hînî hikûmetkirinê dibin. Wisa ye jî eger hînî van tiştan bibin dê zehmet be ku ew dev ji wan tiştan berdin. Û ew dixwazin wan mafên xwe biparêzin. îhtîmal e di demeke nêz de Rojava jî dibe weke Başûr û kurd jî dibin xwedî statûyekê.

**Hilbijartinên Amerîkayê nêzîk e, gelo di ajandeyên kandîdên nû de kurd jî cih digirin? Ew derbarê kurdan çawa difikirin? Em dizanin ku di şerê dijî DAIŞ'ê wan zêdetir alîkariya Hikûmeta Herêma Kurdistanê kirin, niha ji bo Rojava bernameyeke wan ya taybet heye?**

Em niha bi Trump dest pê bikin, ew kandîdekî cuda ye gelekî tund e û bi awayekî vekirî û zelal diaxife. Hin kesan acis dike û gelek kes jî jê kêfxweş dibin. Niha miletê vir yên ku nebajarî ne ji gotinên Trump hez dikin. Trump ji siyaseta derve haydar nîne. Dema ku bi namzedê din re dikete minaqişeyê hertim henekên xwe bi wî dikirin û digotin 'ew siyaseta derve nizane.' Lê paşê hêdî hêdî Trump ew kêmasiya xwe dît û bi zimanekî baştir dest bi axaftinê kir. Berî wê çend caran qala kurdan kir lê nizanîbû kurd kî ne û li ku dijîn û meseleya kurdan çî ye. Hin kesan henekên xwe pê kirin û gotin 'tu qala kurdan dikî û hîn nizanî kurd kî ne.' Çend hefte berî niha di Newyork Times'ê de axaftineke wî hebû ku digot 'ez heyranê kurda me, ez heyranê şervanên kurd im.' Rojnamevan jê pirsî bû; 'Tu çawa dihêlî ku tirk şerê kurdan bikin, tirk hevpeymanê Amerîkayê ne?' Wî jî gotibû; 'Ez karekê dikim ku Tirkiye û kurd bi hev re biaxifin, ji ber ku hebûna wan herduyan jî ji me re lazim e. Ew her du jî ji bo Amerîkayê re hêja ne. Eger ez bibim serok ez ê hewl bidim ku wan bînim cem hev û wan li hev bînim.'

**Piştî şerê Cerablûsê ku di navbera YPG û Tirkiyê de şer jî çêbûye hin rayedarên Amerîkayê ragihandin ku di navbera YPG û Tirkiyê de agirbest hatiye ragihandin, mimkûn e Amerîka YPG û Tirkiyê ji bo guftûgoyê bîne ser maseya muzakereyê?**

Belê mimkûn e. Têkiliya navbera YPG û Amerîka dema şerê Kobanê dest pê kir dema ku balafirên Amerîka li hêzên DAIŞ'ê xistin. Amerîka ji ber ku bikaribe agahiyên şer bi YPG'ê re parve bike hin serbazên YPG'ê tevlî leşkerên xwe yên wê derê kirin û niha du sal in ku ev pêwendî didome. Û niha hevkariya wan zêdetir jî bûye. Amerîka çend caran bi awayekî fermî û hem jî bi rêya hin siyasetmedarên xwe ev mesaj ji bo kurdan re şandin û wisa gotin ku ew zaf kêfxweş in ku pêwendiya wan bi we re heye. Gotin; 'Em ji we hez dikin ji ber ku hûn bûne hevpeymana me. Û ji bo şerê li hemberî DAIŞ'ê jî dikarin bigîjin encamekê. Em van tiştan dizanin, lê pêwendiya me bi tirkan re jî ji me re girîng e. 60 sal in pêwediya me bi tirkan re heye û em nikarin bi carekê re dev ji tirkan berdin, em nikarin zêde jî wan acis bikin.'

Amerîka hinekî zelal jî diaxife yanê bi kurdan re dibêje 'em naxwazin hûn li wê derê bibêjin em dewlet in, yan jî em ê bibin dewlet.' Dizanin ku tirk neheqiyê li kurdan dikin û kurd jî divê bibin xwedî maf û xwedî dewlet lê niha konjonktor û gumana vê yekê nîne. Yanê niha îmkana ku kurd rabin û ji xwe re dewletekê ava bikin, nîne. Divê niha rewş bi awayekê bê ragirtin ku ne kurd ji bo çêkirina dewletê re hewl bidin û ne jî tirk bikaribin weke berê zilmê li kurdan bikin. Min gelek caran xwendiye û bihîstiye ku hem kurd û hem jî tirk dixwazin li hev werin. Êdî şer nekin û çareseriyekê ji bo vê meseleyê peyda bikin, ji bo berjewendiya Amerîkayê re jî ev tişt lazim e. Eger ev rewş bi vî awayî berdewam bike îhtîmal e ev tişt ji kontrola Amerîkayê jî derkeve.



**Gelo Amerîka piştevaniya korîdora ji Qamîşlo heta Efrînê ya ku kurd dixwazin ava bikin dike?**

Amerîka dijî wê korîdorê nîne. Dizane ku eger ew korîdor ava bibe dê rêya DAIŞ'ê jî bê girtin. Dizane ku eger ew korîdor tunebe çeteyên DAIŞ'ê nikarin ji Tirkiyê derbasî Sûriyê bibin. Yanê ew çete dikarin ji wir derbas bibin û herin Ewropayê û li wir êrişên terorê pêk bînin. Amerîka van tiştan dizane. Lê kêşe ew e ku tirk bi ti awayî naxwazin ku ew korîdor ava bibe û hertim dîplomat û rayedayên tirk vê tiştê tînin ziman. Tirkiye wisa difikire ku ew korîdor were avakirin derdorê wan dibin kurd û îhtîmala parçebûna wan dê hebe. Amerîka ne bi zelalî li hemberî vê korîdorê ye. Ez wisa difikirim ku ew jî dixwaze ku ew korîdor ava bibe. Lê eger tirk bi siyaseteke dirû û qirêj tevnegeriyana, belkî Amerîkayê bixwesta ku tirk wê korîdorê ava bikin. Lê Amerîka niyeta tirkan dizane û dibîne ku ew ne ji bo ku li hemberî DAIŞ'ê bisekinin wê karê dikin ew zêdetir dixwazin wê derê bigirin ku pêşiya pevgihana erdê kurdan bigirin. Lewma jî Amerîka mecbûr e wê korîdorê ava bike. Eger kurd jî nekarin bi awayekî belkî bixwaze tirk wê karê bikin. Eger sibê dusibê dîsa li Ewropayê teqîn û êriş çêbibin wê demê Amerîka dê vegere û bibêje ku wisa xuya ye ku DAIŞ hîn dikare ji wê derê derbasî nava axa Tirkiyê bibe û here Ewropayê.

**Civînên John Kery û Wezîrê Karên Derve yê Rûsyayê berdewam hene, hin pisporên siyasî radigihînin ku Rûsya û Amerîka li ser çareseriya meseleya Sûriyê hemaheng in. Raya te li ser vê meseleyê çî ye?**

Ew demeke ku ew ji bo çareserkirina vê meseleyê bi hev re hemaheng in ji ber ku eger ew mesele dirêj bibe ihtimala şerê di navbera Rûsya û Amerîkayê de jî heye. Yanê ewqas dewlet û grûp ketine nava vî şerî ku êdî meriv nizane kî bi kê re şer dike. Ev tişt ji bo herdu dewletan re jî xeternak e. Divê di demeke zû de ev mesele çareser bibe. Lê problema mezin çûyîn yan mayîna Esad e. Amerîka dizane hebûna Esad û desthilata wî li her derê hebe ev der dikevin bin kontrola Rûsyayê li aliyê din kurd jî hevpeymana Amerîkayê ne û di hundirê Sûriyê de ne, lewma Amerîka dixwaze kurd xurt bibin. Ji aliyekê ve Rûs jî naxwazin kurdan ji dest bidin û Amerîka jî kurdan weke hêza xwe dibîne. Eger em binêrin Rûsya hertim dibêje ji bo civîna lihevhatinê divê kurd jî beşdar bin. Gerê nûnerê wan jî hebe. Ew bi wê menayê nîne ku zêde ji kurdan hez dikin lê ew dizanin eger em li dijî kurdan bin wê demê em sedîsed kurdan ji dest didin. Û ew dikevin destê Amerîkayê. Divê em wisa tevbigerin ku têkiliya kurdan bi me re jî hebe. Yanê deriyên wan ji me re jî vekirî bin. Ez wisa difikirim heta ku DAIŞ ji wê derê dernekeve sedîsed tiştekî wisa naqewime. Heta ku kurd bi awayekî fermî mafê xwe nedin qebûlkirin û meseleya Esad neyê çareserkirin ew herdu dewlet jî nikarin tiştekî çareser bikin. Niha hîn sê mesele hene: 1. Kurd li wê derê ne lê hîn fermî nehatine naskirin. 2. Esad hîn jî dixwaze li ser cihê xwe bimîne û Rûsiye jî dixwaze û belkî Tirkiye jî siberojê vê tiştê bixwaze. 3. Hîn jî DAIŞ li wir heye û belkî paytextekê ji xwe re li Reqayê çêbike. Lê herdu dewlet jî dixwazin ku ev mesele zûtir çareser bibe.

**Piştî ku Tirkiye derbasî Cerablûsê bû, welatên Rojava helwesta Tirkiyê li ser xaka Sûriyê çawa nirxandin?**

Hemû medya û akademîsyenên rojavayî gotin 'şerê ku Tirkiyê dest pê kiriye ne ji bo DAIŞ'ê lê li dijî kurdan e.' Ew hemû hemfikir in û ev yek jî zelal e ku wisa ye. Lê pirs ev e ku çima tevî ku herkes dizane meqeda Tirkiyê ji destpêkirina vî şerî çî ye dîsa jî wan karî bi hêsanî vî karî bikin? Em salekî berî niha eger em li medyaya Amerîkayê binêrin wan hemûyan jî digotin ku deriyên Tirkiyê ji bo DAIŞ'ê re vekirî ne. Bi wê derê re digotin 'otobana cihadiyan.' Belgeyên wan jî hebûn û bi hin kesên ku ji wê derê derbas bibûn re jî roportaj çêkiribûn. Heta HDP û CHP'ê jî vê meseleyê ji meclîsê pirsîbûn. Û ji hikûmetê xwestibûn ku ew bersiva van pirsan bide, lê hikûmetê bersivek nedabû. Ew jî weke niha ku herkes dizane çima Tirkiye derbasî Rojava bûye lê dengê xwe dernaxe ji ber ku Tirkiye dewleteke mezin e. Têkiliyên wan bi dewletan re, şîrketên mezin re û artêşan re heye û ti kes naxwaze pêwendiya xwe bi giştî bi tirkan re qut bike. Piştî derbeya Tirkiyê, êdî hikûmeta Tirkiyê ji welatên Rojava re got; 'Emê êdî rêyeke din ji xwe re bibînin û bi Rûsya, Îran û Esad re hevaltiyê bikin.' Niha li vir ev siyaseta Tirkiyê weke şantajê dibînin, ku Tirkiye vê awayê ji xwe re kiriye exlaqekê. Yanê bi rêya penaberan Ewropayê tehdîd dike. Ji bo vê derbeyê Amerîkayê tehdîd dike. Bi rêya kurdan û Esad, Rûsyayê tehdîd dike. Yanê siyaseta tehdîdê bi kar tîne û ev yek jî herkesî aciz dike. Ez wisa bawer dikim ku ev tişt zêde dirêj neke û divê ji bo Tirkiyê re çareyekê bibînin. ku Tirkiye siyaseta xwe bidomîne.

www.arsivakurd.org





# ZİMANGEH



Abdullah Kıran

Emê di vê xeleka nivîsa xwe de behsa hin têgehên jiyana aborî û berhemdariyê bikin ku di zanista ekonomiyê de cîh digrin.

-Katma Değer Vergisi (Value added tax) Baca Nîrxbarkirî;
1) Baca ku ji firotana mal û xizmetan tê standin.
2) Di teslîmkirina mal an xizmetekê de, baca ku ji alî kesê ku mal teslîm distîne ve tê dayin.
Mînak: Li Tirkiyê baca nîrxbarkirî ji %17 ye û gellek bilind e.
Mînak: Ma gelo baca nîrxbarkirî ji bo her mal û xizmetê yek e?
-Üretim (Production) Berhênerî; çalakiya çêkirin an zêdekirina mal an nirxekî.
-Üretim Faktorleri (Factors of Production) Faktorên Berhênerî; hêmanên aborî yên wek ax, ked û sermiyan.
-Üretim İlişkileri (Relations of Production) Têkiliyên Berhênerî; têkiliyên ku li ser bingeha kar û milkiyetê rû didin. Li gor dîtwariya Marksîst, ev têkilî bandora xwe li ser her cûre têkiliyên civakî nîşan didin û pirê caran roleke kifşkar dileyizin.
-Üretim Araçları (Means of production) Navgînên Berhêneriyê; Ji her cûre obje, navgîn û agahiya teknîkî ya ku bi riya wan karê berhêneriyê tê ajotin re navgînên berhêneriyê tê gotin.
-Üretici Güçler (Forces of Production) Hêzên berhênerî; Ji axê (erde) bigire heta navgînan, her cûre hêzên ku berhêneriyê pêk tînin.
-Üretmek (Produce) Berhênan; Îmal an çêkirina malekî an jî dayina xizmetekê.
-Birikim (Accumulation) Serhevî;
1) Li derekê civandin û dayina ser hev.
2) Di aboriyê de demajoya zêdebûna mal an pere.
-Sermaye Birikimi (Capital Stock) Serheviya Sermiyan; Di sîstemke aborî de, zêdebûna ku di kewarkirina (stokkirna) sermiyan de pêk tê.
-Artık Değer (Surplus Value) Nîrxê Bermayî; Li gor teoriya Karl Marks di gihandina her berî de kedek tê dayin û nirxekî (bihayek) her berê gihandî heye. Bihayê ji destmiza karker zêdetir nirxê bermayî ye. Mînak: Eger karkerek heta êvarê bixebite û bi bihayê 100 dolarî tiştekî bîne pê, belê xwedanmal tenê 30 dolarî bidê, hingê wî karkerî bi qasî 70 dolarî nirxê zêde çêkiriye.
-Artık Emek (Surplus Labor) Keda Bermayî; Xebata ku hemberî wê nehatiye dayin. Eger karkerek di şûna ku ewê 8 saetan bixebite de, her roj 10 saetan bixebite û bergîdana 2 saetên zêde nestîne, hingê ew kedeke zêde dide, keda bêbergîdan.
-Arz (Supply): Daberî; Malê ku ji bo dêrzkirinê hatiye pêşkêşkirin; pêşkêşî.
-Arz / Talep Kanunu (Law of Supply and Demand) Rêbaza Daberî û Daxwazî; Di şertên piyaseya reqabetê (hemberî) de destûrdayina bi serbestî guherîne bihayê tiştan. Bi vî awayî bihayê tiştan bi hemdê xwe tê radeyekê û wekheviya daberî û daxwazî pêk tîne, ji bo piyaseyê yeksaniyekê çêdike. Li gor teoriya Adam Smith, destê nedîtî (invisiable hand) yeksaniya piyaseyê pêk tîne, loma divê heta ji dest tê serbestiya bazarê bê parastin.
-Tüketim (Consumption) Dêrzwerî; Bi armanca pêkanîna hewcedariyekê bikaranîna mal an xizmetekê.
-Tüketim Toplumu (Consumption Society) Civata Dêrzwer; ji civata ku berhêneriya wê kêm e û bi tesîra moda û reklamê zihêkirinên wê zêde ne re tê gotin.
-Toplu tüketim (Collective cunsumption) Dêrkirina Komelî; ji rewşa bi awayê komî zihêkirinê re tê gotin.
-Yığın (Mass) Hêwirze; Li ser hev civîn, kombûn.
-Yığılmak (Rool up) Hêwirîn; Rewşa bi ser kes an tiştekî ve kombûn.
Mînak: Wê rojê hemû leşkerên Romê bi ser serê Bavê Lalo ve hêwirîn.
Mînak: Berê êvarê pezê me bi ser kevirê sûravkê ve hêwirî

-Yontmak (Sculpt) Terişandin:
1) Rewşa kezaxtin an guliyên darekê birrîn
2) Bi keyskirin, edilandin an terbiyekirina kesekî (mecazî).
Mînak: Xwezî te piçekê din ev kevirê ha biterişanda.
Mînak: Çi zilamek tamsar, dinyanedîtî û neterişandî bû.

Têbinî: Ji bo rexne, gazin, lome û pêşniyazên xwe ji min re binivîsin: 29abdullah@gmail.com

### Mesrûr Barzanî:

# Em ji Mûsilê agahî verdigrin

Operasyona rizgarkirina bajarê Mûsilê demeke dirêj e di rojeva rayedarên Iraq, Dewletên Yekbûyî yên Amerîka (DYA) û Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) de ye. Heta niha ji bo pêkanîna operasyonê di navbera rayedarên RHK'ê bi taybet jî Serokê RHKê Mesûd Barzanî û nûnerên DYA'yê de dîplomasiyeke awarte birêve çû. Li gor zanyariyên ku BasNûçe'yê ji rayedarên Wezareya Pêşmerge ya RHK'ê stendine ew ê operasyona rizgarkirina bajêr di meha îlonê de destpê bike. Herwiha beriya operasyona rizgarkirina bajêr, Pêşmergeyan bi serperiştiya Serokê RHK'ê û Serfermandarê Giştî yê Pêşmergeyan Mesûd Barzanî li Mîhwera Giwêr – Xazirê operasyonek li dar xistin û di encama operasyonê de zêdetir ji 120 kîlometreyan kontrol kiribûn. Bi operasyona dawî ya Pêşmergeyan ve başûr, bakur û rojavayê Mûsilê bi temamî ketibû bin kontrola Pêşmergeyan.

Li aliyê din Artêşa Iraqê jî bi kontrolkirina navçeya Geyara rêyên DAIŞ'ê birrîn û li başûrê bajarê Mûsilê jî rê li ber tevgera DAIŞ'ê girt.



Operasyona Mûsilê di rojeva Şêwirmendê Encûmena Asayîşa RHK'ê Mesrûr Barzanî jî de ye. Asayîşa Kurdistanê bi rewşa Mûsilê re ji nêz ve eleqedar e û hêzên ser bi Asayîşê car caran li herema bin destê DAİŞ'ê operasyonên taybet lidardixin.

Mesrûr Barzanî ku derbarê mijarê de ji kanala asmanî ya ABC ya Avstûralyayê re axivî de, derbarê rewşa dawî ya şerê li dijî DAIŞ'ê Operasyona Mûsilê de zanyarî dan û eşkere kir ku bi operasyonên serkeftî yên Pêşmergeyan re DAIŞ lawaz bûye. Barzanî daxuyand ku DAIŞ'ê kontrola ewlehiya bajarê Mûsilê ji dest daye û endamên wê bi hev ketine. Barzanî lawaziya DAIŞ'ê anî ziman wiha got: "Em dikarin bibînin DAIŞ rojbiroj zeîftir dibe. Morala wan li gor dema borî gelekî xerab bûye. Em dibînin hin endamên DAIŞ'ê direvin. Me kêşeyên wan di nava bajarê Mûsilê de dîtine. Îdam, kuştin û dizî ev kêşeyên nû ne ku berê li wir tunebûn. Ev tişt nîşan didin ku DAIŞ kontrola ewlehiyê ji dest daye û nikare ewlehiya hundirê bajarê Mûsilê baş ragire."

**"Di derbarê DAIŞ'ê de ji me re agahî tên"**

Barzanî, herwiha tekeziyê li ser wê yekê dike ku DAIŞ'ê çavê xelkê Mûsilê gelekî tirsandiye û xelk nikarin li dijî wê li nava bajêr, serî hildin. Lewre gelek zehmet e ku oprasyon di hundirê bajêr de çêbibin yan kesek bixwaze li dijî DAIŞ'ê di nava bajarê Mûsilê de serhildanekê çêbike, xelk gelekî tirsiya ye. Barzanî amaje li ser wê yekê jî dike ku wan di derbarê çavkaniyên DAIŞ'ê yên aborî û darayî jî de gelek zanyarî ji nava bajêr bi dest xistine û wiha axivî: "Em dizanin terorîstên DAIŞ'ê gelekî hov in û şaşitiyeke biçûk jî dikare bibe sedema îdam û kuştina xelkê. Xelk bi hêsanî nikarin li hemberî DAIŞ'ê serî hildin û li gorî xwestekên xwe tevbigerin. Lê ew li benda hêzên derve ne ku nêzî bajêr bibin. Helbet me gelek agahî û zanyarî bi dest xistine. Derbarê armancên wan, çavkaniyên wan yên aborî, embarên wan yên pere û gelek agahiyên din ku her roj ji me re tên. Gelek rê ji bo bidestxistina zanyarî û agahiyan hene. Hin ji wan ji hundirê bajêr ji me re tên."

**"Ji bo operasyonê em bi Iraqê re diaxivin"**

Şêwirmendê Encûmena Asayîşa RHK'ê Barzanî, ragihand ku di Mûsilê de gelek kemîneyên olî û etnîkî hene û herwiha ew jî dixwazin di operasyonê de cih bigrin. Barzanî, da zanîn ku tiştê ji wan re herî giring niha rizgarkirina Mûsilê ye û divê bajar ji destê DAIŞ'ê bê derxistin. Barzanî wiha got: "Tiştê herî girîng niha azadkirina bajarê Mûsilê ye. Niha tenê em dikarin DAIŞ'ê ji bajêr derxin. Û piştre jî tiştê girîng çawaniya birêvebirina Mûsilê ya piştî rizgarkirinê ye. Û ewlehiya Mûsilê dê gelekî girîngtir bibe. Eger em berê xwe bidin Mûsilê em dikarin gelek grûb û komên etnîkî bibînin. Kurdên şîe û sune, erebên şîe û sune, tirkmanên şîe û sune, şebek, êzdî û herwisa



mesîhî. Ev hemû etnîsîte û bawerî di hundirê Mûsilê de dijîn. Heryek ji wan grûban jî garantiya ewlehiya xwe di siberoja Mûsilê de dixwaze. Û ew hemû jî dixwazin hem di operasyonê de hem jî di dema piştî oprasyonê de rolekê bilîzin. Niha em hewldidin û em dixwazin bi dewleta Iraqê re li ser vê meseleyê biaxivin. Em herwisa dixwazin bi koalîsyonê re jî van meseleyan zelal bikin. Û em dixwazin rêyeke baş ji bo rezamendiya hemû alî û grûban peyda bikin."

**"Pêşmerge 27 hezar kîlometrekare xak rizgar kiriye"**

Herwiha Barzanî behsa serkeftinên Pêşmerge yên li dijî DAIŞ'ê jî kir û ragihand ku heta niha Pêşmerge 27000 kîlometrekare xaka Kurdistanê ji destê DAIŞ'ê rizgarkiriye. Barzanî behsa lihevkirina hêzan a li ser operasyonê jî kir û wiha got: "Eger lihevkirinek di navbera hemû hêzan, artêşa Iraqê û hêzên hevpeyman de çêbibe, dê mekanîzmayek çêbibe ku ji aliyê wan hemûyan de bê qebûlkirin. Niha ji bo me re hin astengiyên jeopolîtîk hene ji bo ku em heta kî derê dikarin bi pêşve herin. Niha me teqrîben 27 hezar kîlometrên çargoşe ji bin kontrola DAIŞ'ê rizgar kiriye. Ev dever jî hemû kurd bûn û erdê kurdan bû. Ji bo ku em niha bixwazin ji wan sinoran pêşdatir herin divê em bi xelkê xwecih re û herwisa bi dewleta Iraqê re li hev bikin. Mûsil jî yek ji wan deveran e ku divê lihevkirinek û têgihîştinek li ser wê herêmê çêbibe. Divê xuya bibe ku em heta ku derê dikarin pêşve herin. Ji ber ku em naxwazin ti hesasiyetan çêbikin."

Di dawiya axaftina xwe de Barzanî li ser proseya piştî rizgarkirina Mûsilê jî rawestiya û daxuyand ku divê hemû ali li ser ewlehiya herêmê biaxivin. Barzanî axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Ez hêvî dikim herkes têbigihêje ku piştî rizgarkirina bajêr dê valahiyek li wir hebe. Heta ku ewlehî bi giştî çêbibe. Lewma jî gelekî girîng e ku hemû alî û grûb li ser vê yekê biaxivin. Eger ev tişt bi awayekî rêkûpêk neyên bicihkirin hertişt dê xerab bibe lê em hêvî dikin herkes ji çewtiyên berê dersê weribigire û bizanibe ku em nikarin li dijî xwestekên xelkê bi zorê ji wan re tiştekî çareser bikin."

**"Dema referandûmê hatiye"**

Li aliyê din Mesrûr Barzanî di nava hefteyê de bi parlamenterê Brîtanyayê Nedîm Zehawî re civiya. Hat zanîn ku Barzanî di civînê behsa referandûma serxwebûna Herêma Kurdistanê kiriye û gotiye: "Niha derfeta me ya lidarxistina referandûmê heye." Di vê hevdîtinê de pêwendiyên dualî, bi taybet Operesyona Mûsilê û bi giştî mesele û kêşeyên herêmê hatine gotûbêjkirin. Herwiha Mesrûr Barzanî diyar kir ku pêwendiyên Herêma Kurdistanê yên dualî bi Brîtanya, Iraq, Hevpeymaniya Navdewletî, Dewletên Yekbûyî yên Amarikayê re ji bo rêkeftinekî siyasî ya Mûsilê dê bidomin.



### Tirkiye, Sûriyê û Kurd

# Sêgoşeya Heleb, Menbîc û Cerablûsê de 3 aktor

Memê Botî

Li Sûriyê rewşa siyasî û leşkerî her diçe aloztir dibe. Şerê navxweyî roj bi roj gurtir dibe. Hejmara miriyan û penaberan zêdetir dibe. Mal û war talan û wêran dibin. Bajarên ku rojekê weke cemsereke aborî dikarîbûn welatekî li ser xwe bihêlin niha bûne navenda şer û pevçûnên giran. Heleb jî yek ji girîngtirîn navendên aborî ji bo welatê Sûriyê re dihate hesibandin. Bajêr li ser rêya Şamê ye û bi awayekî bakûr û başûrê Sûriyê digihîne hev.



Demekê berî niha Heleb weke navenda Artêşa Azad bû. Welatên weke Qeter û Erebistanê û herwisa Tirkiyê li Helebê alîkariya hêza opozîsyona Sûriyê dikirin û ji bajar weke keleha opozîsyonê dihat hesibandin. Heleb jiber ku nêzî sinorê Tirkiyê ye, alîkariyên derve bi rêya Tirkiyê digihîşt ber destê muxalîfan. Demekê berî niha rejîma Sûriyê bi alîkariya hêzên Îranê û balafirên şer yên Rûsyayê dora Helebê pêçan û pêwendiya Helebê bi derve re qut kirin. Ji ber ku êdî alîkarî nagihêjin ber destê Artêşa Azad ew lawaz bûne û rewşa bajarê Helebê jî li gor berjewendiya rejîma Esad hatiye guhertin. Wisa xuya ye ku di demeke nêz de rejîma Sûriyê û hevpeymanên wê - Îran, Hizbûllaha Lûbnanê û Rûsya - bikaribin kontrola bajarê Helebê bigirine destê xwe. Rêxistinên mafên mirovan ji bo rewşa niha ya Helebê nîgeran in û hewldidin herdu aliyên şer agirbestê ragihînin. Li gor nûçeyan hejmara kuştiyan rojbiroj zêdetir dibe û niha xwarin û vexwarin jî nema peyda dibe.

Li aliyê din welatên erebî gelekî hewldidin ku bi awayekî alîkariya Artêşa Azad bikin. Amerîka soz dabûn dewleta Tirkiyê ku nehêle PYD'ê derbasî rojavayê Feradê be lê piştî ku HSD'ê bajarê Menbîcê ji destê DAIŞ'ê rizgar kir û Meclîsa Leşkerî ya Cerablûsê jî ragihandin.

Tirkiye li benda soza Amerîkayê nesekinî û civîneke lezgîn li dar xist. Biryara êrişkirina nava xaka Sûriyê girt. Cihgirê Serokê Amerîkayê Joe Biden hate Tirkiyê û di heman demê de Artêşa Azad ya Sûriyê bi piştevaniya hêzên tirk derbasî bajarê Cerablûsê bûn. Amerîka jî ji kurdên Rojava xwest ku li gor daxwaza dewleta Tirkiyê vegerin Rojhilatê Feradê û wê derê vala bikin.

Bajarê Cerablûsê li Bakurê Helebê ye. Ev bajar ji bo Tirkiyê re gelekî stratejîk û girîng e. Ji aliyêkî ve pêwendiya Tirkiyê û Artêşa Azad berdewam dibe û ji aliyekî din ve rêya DAIŞ'ê ber bi sinorê Tirkiyê ve tê girtin lê ji hemû mijaran girîngtir ku dewleta Tirkiyê zêdetir jê ditirse, çêbûna herêmeke kurdî li sinorê Başûrê Tirkiyê ye. Berî ku Tirkiye êrişî Cerablûsê bike Hêzên Sûriya Demokratîk û YPG'ê Meclîsa Leşkerî ya Cerablûsê ji bo rizgarkirina wî bajarî ragihandin. Tirkiye hebûna statûyeke kurdî li bakûrê Sûriyê weke xeta sor ji xwe re dihesibîne û rayedarên Tirkiyê radigihînin ku ew bi ti awayî nahêlin kurdên Sûriyê Kantona Efrîn û Kobanê bigihînin hev.

**Metirsiya Tirkiyê korîdora kurdî ye**

Li gor hin pisporên warê siyasetê, kurdên Sûriyê dixwazin li bakûrê Sûriyê korîdorekê vekin û wê korîdorê ji sinorê Başûrê Kurdistanê heta gihîştina ber Derya Spî bidomînin. Tirkiye jî ji vê yekê ditirse. Tirkiye dizane ku eger korîdora navborî vebibe dibe ku pêwendiya Başûr û Rojavayê Kurdistanê geştir bibe. Wisa xuya ye ku eger ev teorî rast be. Petrola Başûrê Kurdistanê bi vî awayî rasterast ji Rojava derbasî Derya Spî dibe. Û êdî Tirkiye ji hêla aborî ve şikesteke mezin dixwe. Ev yek jî ji rastiyê dûr nîne ji ber ku şerê Rojhilata Navîn şerê berjewendiyan e. Her welat li gorî siyaseta xwe hewl dide ji ava şêlo zêdetir masiyan bigire.



**Amerîka ji şerê YPG'ê û Tirkiyê nerazî ye**

Wisa xwiya dike ku Amerîka ku Tirkiyê û kurdên Rojava weke hevpeymanên xwe dizane, ji pevçûna tirkan û kurdan nerazî ye. Rayedarên Amerîka daxuyandin ku divê şerê kurdan û tirkan were rawestandin. Li gor daxuyaniya rayedarên Amerîka di navbera Tirkiyê û kurdên Rojava de agirbestek çêbûye, rayedarên Rojava ev yek piştrast kirin lê wisa xuya ye ku ev lihevkirineke demkî ye û Tirkiyê jî gotiye ku ti lihevkirin di navbera me û kurdên Rojava de tuneye. Amerîka nigeran e ku şer û pevçûna Tirkiyê û kurdên Rojava germtir bibe û ew ji hedefa xwe ya sereke ku şerê dijî DAIŞ'ê ye, dûr bikevin.

**Amerîka; PYD û Tirkiyê wê bîne ser maseya diyalogê?**

Wisa xwiya dike ku Amerîka niha di rewşeke dijwar de ye. Li aliyekê pêwîstiya wê bi alîkariya Tirkiyê heye ji bo rêgirtina li ber komên cihadî û DAIŞ'ê ku dixwazin ji Tirkiyê derbasî Sûriyê bibin. Li aliyekî din pêwîstiya Amerîkayê bi kurdên Sûriyê heye ji bo şerê li hemberî DAIŞ'ê. Amerîka ji bo çareserkirina vê meseleyê divê dewleta Tirkiyê bi awayekî razî bike û vegerîne ser maseya goftugoya li gel PKK'ê. Agirbest di navbera PKK'ê û dewleta Tirkiyê di havîna par de hate şikestin. Derbeya 15'ê Tîrmehê çêbûyî jî nebû sedem ku herdu alî bixwazin stratejiya xwe li dijî hev tûjtir bikin. Eger Tirkiye nikaribe çareseriyeke aştiyane ji bo meseleya kurd re bibîne ew kurdên Sûriyê jî weke xeterekê ji xwe re dihesibîne û bi bihaneya şerê dijî DAIŞ'ê dê êrişên wê li ser YPG'ê jî dewam bikin.

Dr. Gönül Tol akademîsyena warê siyasetê di Enstîtûya Rojhilata Navîn di rojnameya The New York Timesê de meqaleyek li ser qonaxa nû ya siyaseta Tirkiyê li hemberî Sûriyê nivîsiye û amaje kiriye ku eger Amerîka bixwaze Tirkiyê û PKK'ê vegerine ser maseya goftugoyê divê Amerîka hin tiştan pêşniyaz bike. Tol di vê baweriyê de ye ku eger Amerîka pêwendiya xwe ya leşkerî bi Tirkiyê re xurttir bike, dikare Tirkiyê bikişîne ser maseya goftugoyê.

Meriv dikare bibîne ku şerê Bakur bi awayekî girêdayî rewşa Rojava ye. Bertekên dewleta Tirkiyê li hemberî rewşa Rojava dibe sedema hin bûyeran li Bakur. Herdem ku qala li hevkirina Tirkiye û PYD'ê tên kirin, meriv dikare bêhna proseya çareseriyê li Bakur jî bibihîze. Mesûd Barzanî Serokê Herêma Kurdistanê demekê berî niha dema ku hatibû Enqerê gotibû: "Ez hêvî dikim di demeke nêz de proseya çareseriyê were destpêkirin." Hîn tiştekî xuya tune ye. Dibe ku lihevkirina li Rojava ku Amerîka ketiye navbera PYD'ê û Tirkiyê destpêka proseyeke dirêjtir be ku encama wê bigihêje Bakur jî. Wisa xuya ye çarenûsa Rojava û Bakur girêdayî hev e. Ji bo ku aramî û aştî vegere herêma kurdan li Bakur û Rojava divê siyaseteke nerm û mîyanerew bê rojevê.

www.arsivakurd.org

BasNûçe 05 - 11 Îlon 2016

# Çeka nû ya DAIŞ'ê zarok in?

Derya Kılıç

Li Dîlokê di 20 Tebaxê 2016'an de di daweteke malbata kurd de teqînek pêk hat û nêzîkî 60 kesan jiyana xwe jidest dan û 96 kes jî brîndar bûn. Ji kesên ku jiyana xwe ji dest dan, 29 ji wan zarok bûn. Piştî teqînê diyar bû ku bûyer êrişeke întîxarî ye û ji aliyê DAİŞ'ê ve bi zarokekî 12-14 salî hatiye kirin. Ev yek li Tirkiyeyê bûyera yekem bû ku DAİŞ'ê zarokek xwekuj kiribû qurbanî.

Di heman rojan de DAİŞ'ê weneyê celladên xwe yên zarok weşandin ku li Reqayê çend girtî ji aliyê wan zarokan kujer ve tên qetilkirin. Wek ku tê zanîn DAİŞ li deverên ku dagir dike, zarokan dîl digre û wan perwerde dike û dişîne şer. Niha jî diyar bû ku ew zarok wek kujer û xwekuj jî tên bikaranîn.

Li gor agahiyên ewlekariya Tirkiyê di destê DAIŞ'ê de bi sedan zarok hene û ew wek mîlîtan tên perwerdekirin.

Herwiha bi bûyera Dîlokê raporta Netewên Yekbûyî (NY) carek din hat rojevê ku par di derbarê zarokên di destê rêxistinên tûndrew hatibû belavkirin. Li gorî vê raportê; DAIŞ û rêxistenên din yên tundrew ji bo çalakiyên xwe zarokên kêmendam wek xwekuj bikartînin. Li gor zanyariyan DAIŞ'ê yekem car li Bexdayê zarokek xwekuj bi kar aniye.

Dîmenek din yên erjeng di derbarê bikaranîna zarokan de di heman rojan de diyar bû. Li Raqayê 5 zarokên ku temenê wan di navbera 10-13 de bûn, bi çek 5 girtiyan înfaz dikin. Li gor îddiyan ji girtiyên ku bi destê zarokan hatibûn kuştin 2 û yek ji zarokên kujer jî kurd bû. Li gor çavkaniyên DAİŞ'ê her 5 zarok jî ji netewên cuda bûn ku navê wan wiha hatibû diyarkirin: Ebu el Bara el Tunisi, Ebu İshak el Masri, Ebu Fuad el Kurdi, Yusuf el Uzbeki û Ebu Abdullah el Britani. Ew dimenê ku li seranserê cîhanê gelekî dengveda xetera li ser zarokan careke din anî rojevê.



Diyar bû ku qetlîama Dîlokê ku bû sedemê kuştina 60 kesan ji aliyê DAİŞ'ê bi zarokekî xwekujê 12-14 salî hatiye kirin. Di heman rojan de di dîmenên ku ji aliyê DAİŞ'ê ve hatin belavkirin de li Reqayê 5 zarokên ku wek cellad hatin bikaranîn 5 girtiyan înfaz dikin. Hêzên ewlehiyê yên Tirkiyê radigihînin ku di destê DAIŞ'ê de bi sedan zarok hene û ew zarok wekî leşker tên bikaranîn.

**'Li Enqerê dibistana DAIŞ'ê'**

Di heman rojan de li Tirkiyê îstîsmarkirina zarokan ji aliyê DİAŞ'ê bû mijara medyayê. Li gor hinek nûçeyên rojnameyan "DAIŞ'ê li Enqereyê di avahiyek de 30 zarokan perwerde dikir." Li gorî van nûçeyan temenê wan zarokan di navbera 9-17 salan de bû. Ji wan zarokan 25 jê keç bûn. Ew zarokên bêkes bûn, dê û bavên hinekan jî di girtîgehan de bûn. Li gor nûçeyan ew zarok bi riyên medyaya civakî hatibûn peydakirin. Di dawiya perwerdeyê bawername didin zarokan û endamên DAIŞ'ê jî ji bo neyên tespîtkirin, rî û simbelên xwe jê kirine.

Wezîrê Navxweyî demê Efkan Ala vê nûçeyê derewand û diyar kir ku ti dibistanên rêxistinên terorê li Tirkiyê tune ne û ew li dijî terorê baş têdikoşe. Lİ gor Ala, polîsê Tirkiyê di çarçoweya têkoşina li dijî DAIŞ'ê de tenê di sala 2016'an de 5803 kes desteser kiriye.

Li cîhanê ji bo rêgiriya birakanîna zarokan ji aliyê DAIŞ'ê xebatekê jî dest pê nekiriye. Ji Amnesty İnternational'ê Ruhat Sena Akşener û ji Komeleya Gündem Çocuk'ê Ezgin Koman li ser mijarên zarokên mîlîtan, mafên zarokan û bikaranîna wan ji aliyê DAIŞ'ê ve ji BasNûçe'yê re axivîn. Prof. Dr. Figen Paslı jî derbarê rewşa derûniya zarokan û îstîmaskirina wan de hin zanyarî bi BasNûçe'yê re parvekirin.

**Koman: Zarokan li ser olê dixapînin**

Berpirsyara Komeleya Gündem Çocuk'ê Ezgi Koman kiryarên DAIŞ'ê, bikaranîna zarokan ji BasNûçe'yê re nirxand û da zanîn ku hemû mafên zarokan tên bênpêkirin û ew yek gelekî xeter e. Koman ragihand di şeran de zarok jî tên bikaranîn, û rêxistinên tundrew zarokên sêwî dixapînin yan jî direvînin.

Herwiha li heremên şer û pevçûnan ji ber ku pêwendiyên zarokan bi jiyanê re namîne, ew jî bi hêsanî tên bikaranîn. Zarok di nav şer de wek zarok mezin nabin. Ji bilî wê ev rêxistin zarokan li ser navê olê û bi zextê dixapînin.

Koman armanca rêxistinên ku zarokan bi kar tîne nirxand û got: "Ji ber ku bi hêsanî tên xapandin, ev rêxistin bi taybetî bala xwe didin ser zarokan. Rêxistin zarokên piçûk digrin û perwerde dikin. Ew zarok bi taybetî 4-5 salî ne. Dema ku zarokek 4-5 salî bê perwerdekirin, bi wan çi bê fêrkirin, wê qebûl dikin. Herwiha ew bi bi soz û xelatan jî zarokan dixapînin."

Ezgi Koman di derbarê rêgiriyan de jî dibêje divê ji bo zarokan demildest tedbîrên ewlekariyê bên stendin. Lê ji bo wê jî hewce bi sekinandina şer heye. Bi sedema şer di hundirê wan zarokan de nefretek mezin peyda dibe. Divê ji zarok bi şûna nefretê bi hîsên jiyanê bên perwerdekirin. Koman dibêje eger na zarokên wisa ti car dê baş nebin. Komeleya Gündem Çocuk'ê wê di Cotmehê de bi kesên pispor û xwedî tecrûbe re wê bên gel hev û agahiyan bi rayagiştî re parve bikin.



Ezgi Koman　Figen Paslı

**Akşener: Zarok di artêşan de jî tên bikaranîn**

Endema Rêxistina Amnesty İnternational'ê Ruhat Sena Akşener jî bal kişand ser 'zarokên militan" û tawanên ku bi wan tên kirin. Akşener, balê kişand ser hiqûqa navnetewî ku şandina zarokan bo şer qedexe dike. Li gor van Akşener li gelek deverên cîhanê zarokên ku temenê wan di bin 18'an de ne, wek leşker di artêşan de tên bikaranîn. Akşener tekezî li ser wê yekê jî kir ku zarok yan ji aliyê dewletan ve yan jî ji aliyê komên tûndrew ve tên çekdarkirin û heta niha bi hezaran zarok di şeran de hatine îstîsmarkirin.

**Akşener dibêje Amnesty İnternational derbarê zarokên de ku di destê DAIŞ'ê de ne heta niha hîç xebatek nekiriye.**

Prof. Paslı: Rêxistên zarokan îstîsmar dikin

Derûnnas Prof. Dr. Figen Paslı jî derbarê derûniya zarokan û xapandina wan de got, ev rêxistin di serdema nûciwaniyê de zarokan îstîmar dikin. Li gor Paslı ji ber ku zarok vê demê rehettir tên îstîsmarkirin û ji bo vê jî hin faktor hene. Rêxistin jî ji bo îdeolojiya xwe zarokên ku di 'serdema listîkê' yan jî di 'serdema dibistanê û kamîlbûnê' de ne, digrin û perwerde dikin.

Prof. Paslı derbarê gihiştina zarokan de jî diyar kir ku zarok di serdema listikê de bi rehetî tevdigerin û ji bo hevaltî û hevkariyê têgihiştina wan gelekî pêş dikeve û êdî diguhere û kesayetiya xwe peyda dikin: "Enerjiya wan zêde ye û ji bo fêrbûnê serdemek baş e. Di serdema dibistanê de rastîbûna civakê tevli hev dibe. Di wê serdemê de kesayetî zêdetir pêş dikeve û ji bo paşeroja wan ew serdem gelekî girîng e. Di serdema kamîlbûna de nasname û bedena xwe nas dikin. Eger dê û bavê di wan serdeman de baldarê zarokên xwe nebin, zarok bi rehetî tên îstîsmarkirin."

Derûnnas Paslı ji bo dermankirina wan zarokan de jî wisa dibêjê: "Ji bo prosesa dermankirina zarokên ku ji aliyê rêxistinan ve hatine bikaranîn, gelek wext lazim e û her zarok di heman wextî de baş nabin. Eger bernameya dermankirina psîkîyatrî û psîksosyal bi awayek baş bê şopandin, zarok dê zûtir baş bibin. "

BasNûçe 05 - 11 Îlon 2016



Kerem Arî

## Tehsîn Taha

# Bêjerê stranbêjên niştimanî



Netewa kurd ji ber hemnişînbûna bi sirûştê re xwediyê hin taybetmendiyan in. Mûzîk û hunera wan taybet e. Dengê dengbêjên kurd û awazên wan xwedî rengekî cuda ne. Hezkirina ji mûzîkê di nava kurdan de sinoran nas nake. Kal û pîr, zarok û mezin û jin û mêr herkes bi awayekî girêdayî mûzîkê ye. Gelek hunermendên kurdan hene ku dengê wan yê xweş û resen tim di nava malên kurdan de tên bihîstin lê hin hunermend dibin siltan û dikevin nava dil û canê gelê xwe. Herkes dixwaze hunera xwe nêzî wan bike. Dema meriv qala mûzîka kurdî li Başûrê Kurdistanê dike bi awayekî xweber Tehsîn Taha bi dengê xwe yê resen ve tê ber çavê mirov. Wî hunermendî hem di warê mûzîkê ve û hem jî di warê welatperweriyê de di nava çand û hunera kurdî de cihekî taybet ji xwe re girtiye û gihîştiye lûtkeya hunera mûzîkê.

Riya ber bi Radyoya Bexdayê

Tehsîn Taha 25'ê Gulana 1941'an li Başûrê Kurdîstanê, li navçeya Amêdîyê ji dayîk bûye. Heft xwîşk û birayên Taha hebûn û bavê wî karmend bûye. Navê bavê wî Taha Mihemed Selîm bû û Tehsîn paşnava xwe ji bavê xwe wergirtiye. Di nav kurdan de bi piranî kes bi bavê xwe ve tên naskirin. Ev nerît bi navên weke Filîtê Quto, Bişarê Çeto, Xerapêtê Xaço û Evdalê Zeynikê jî xuya dike.

Taha ji dema zaroktiya xwe ve dest bi stranan kiriye; di bin tesîra M. Arîf Cizîrî de maye û li ber destê wî perwerdehî dîtiye. Cara yekem li Mangêşê mîkrofon girtiye destê xwe û stranên xwe bi mîkrofonê pêşkêşî xelkê kiriye. Tehsîn Taha yekem care ku mîkrofon girtiye destê xwe strana Mihemed Arif ya bi navê 'Xezal' xwendiye. Herwiha hemû kes din bin tesîra wî de mane û nav û dengê wî belav bûye.

Taha li Duhokê dest bi xwendinê kiriye û di ciwaniya xwe de çûye Mûsilê û bi mûzîkê ve mijûl bûye. Strana xwe ya pêşîn 'Eşkera Nakim' sala 1958'an amade kiriye.

Tehsîn Taha, lîse li Duhokê qedandiye û piştî lîseyê ketiye ezmûnên Beşa Kurdî ya Radyoya Bexdayê û li ezmûnê biserketiye. Herwiha di Radyoya Bexdayê di beşa kurdî de dest bi stran û bernameyan dike. Herwiha Sala 1960'an, dema desthilata General Abdulkerîm Qasim çûye Bexdayê û di "Enstûtiya Hunermendî ya Baskê Tîyatroyê" de dest bi xwendinê kiriye û wê demê ketiye nav siyasetê, wê demê pêwendiyên Iraq û kurdan gelek xirab bûn. Sala 1961'ê çalakiyên kurdan zêde dibin. Taha beşdarî xwepêşandan dibe û ji ber wê tê girtin û panzdeh rojan di bin îşkencê de dimîne.

Dema ku Şoreşa Îlonê destpê dike, ew jî diçe Zaxoyê û beşdarî çalakiyan dibe.

Stranbêjê navdar Tehsîn Taha bi deng û hunera xwe ve mohra xwe li tarîxa çand û kelepûra kurdî daye. Taha ji zarokatiya xwe ve dest bi mûzîkê kiriye û gelek bi nav û deng bûye. Taha, bi welatperwerî û dengê xwe yê cuda ve hatiye naskirin. Li gel stranên evînê, bi piranî stranên welatperweriyê gotine. Gelek konsert li dar xistine û di van konsertan de fikrên netewî belav kiriye.

1963'an tê girtin û nêzikê du salan di zindanê de dimîne, 1970'an vedigere Bexdayê û di radyoyê e dest bi kar dike û sala 1974'an dizewîce. Herwiha û ji vê zewacê çar lawên Taha çêdibin.

Ji ber wezîfa bavê xwe, bi malbata xwe re bajar bi bajar digere. Taha, dema ku li Mûsilê lîse xwendîye, dijî Melikê Iraqê beşdarî meşekê bûye û ji ber vê yekê jî polîs li wî geriyane. Lê ew reviye çûye Amediyê û li wê derê xwe veşartiye û neketiye destê polîsan.

Piştî ku zanîngeh qedandiye weke mamosteyê mûzîkê li Mexmûrê xebitiye û paşê çûye Hewlerê û heta 1970'ê li wir jiyaye.

Dema pêwendiyên dewleta Iraqê û kurdan baş dibin Taha diçe Bexdayê. Li Radyoya Bexdayê stranbêjê navdar Mihemed Şêxo nas dike û bi wî re strana navdar 'Aso' û 'Ey Hewar' distêrê. Taha li Bexdayê bi kesayetên navdar yên weke Mihemed Arîf Cizirî, Hesen Cizirî, Elî Merdan, Meryem Xan, Îsa Berwarî nas dike. Li gel Eyşe Şan û Gulbiharê, li Duhok, Hewlêr û Bexdayê konsertan dide û nav û dengê wî li her çar parçeyên welat belav dibe.

Taha, gelek xizmet ji bo kurdan û mûzîka wan re kiriye û heta dawiya temenê xwe heşt albûm derxistine û di wan albûman de zêdetirî sed staranan cih girtine. Strana 'Bêrîvanê' û 'Rabe Cotyar' gelek tên naskirin û ecibandin, heta îro jî stranên wî her tim tên guhdarkirin. Hin stranên wî li tirkî hatin wergerkirin û li ser navê mûzîka tirkî belav bûne. Ji bo mînak strana İbrahim Tatlıses a pê navdar bûyî 'Ayağımda Kundura' wergera strana Taha ya bi navê 'Min Xem Deryayeke Kûr' e.



Tehsîn ne tenê bi deng û hunera xwe herwisa ew bi welatperwerbûna xwe ve jî dihate naskirin. Taha gelek welatperwer bû û di stranên xwe de rewş û hezkirina welat dianî ziman û konsertên netewî li dar dixistin û xelk hişyar dikir. Di Heman demê de stranên eşq û evînê jî gelek digotin. Sala 1975'an tevgera Mela Mistefa Barzanî têk çû û li ser wê Taha strana 'Ey Felek'ê dinivîse û distirê ku gelekî nav û deng dide. Taha heta dawiya emrê xwe gelek kes jî perwerde kirine. Albûmên wî yên bi navê Rabe Cotyar û Aso li Bakurê Kurdistanê jî ji aliyê Kom Mûzîkê ve hatine derxistin.

Wesîyeta stranbêjê niştimanî

Sala 1994'an Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) Tahsîn Taha û Fûad Ehmed bi hev re dişîne Ewrûpa ku beşdarî şahiya Newrozê û salvegera şoreşa 1970'ê bibin. Li Hollandayê nexweşiya pençeşêrê lê peyda dibe û li wir tedawî dibe. Piştî salekê tedawiyê, 28'ê Gulana 1995'an koça dawîn dike û gora wî niha li Amêdiyê ye. 21 sal li ser mirina Taha re derbas bûye, lê hîn jî ciwan heta pîr û kalan gelek kes li stranên wî guhdar dikin û fikra netewî ji wî digirin.

'...Dilo ez bimrim vê zivistanê  
Kefenê min ker kin ser destê canê  
Qebra min bikolin, li Kurdistan  
Tirba min çêkin li mala bavê,  
Tirba min çêkin li Kurdistanê ...'

Dema ku li Hollandayê li nexweşxanê xwestek, hêvî û kulên xwe tomar dike û ji bo hevjîna xwe Hebîbeyê û lawên xwe Vehêl, Gelvan, Warvan ve Dîrhat dişîne Amêdiyê. Di van dengên xwe de hêviyên xwe ji bo azadiya welêt tîne ziman û wiha dibêje: "Viyana min a herî mezin serxwebûna Kurdistanê ye, dema ez mir im, min li Kurdistanê veşêrin. Berîya ku hûn min defin bikin goristana Amêdiyê, giyanê min bi ava Kaniya Malan bişon û min di dilê Kurdistanê de veşêrin."

Tehsîn Taha, xizmetekî bêhempa ji bo mûzîk û çanda kurdî re kiriye û bûye çinareke mezin.

www.arsivakurd.org

## Cemal Seyare
# Pêşmergeyê mînkuj

Rêzan Karwan

Li Rojhilata Navîn û li Kurdistanê bi êrişên DAIŞ'ê re aloziyek mezintir li deverê peyda bû. Piştî ku DAIŞ ket Sûriyê û Iraqê û devereke berfireh bi dest xist, vê carê berê xwe da Kurdistanê û şerekî dijwar li dijî vê rêxistinê destpê kir ku cîhan hemû bi vî şerê kurda yê li dijî DAIŞ'ê şanaz e.

DAIŞ'ê di şerê li dijî deverên kurdî çekên herî pêşketî bikar anîn û rêbazekî şer yê DAIŞ'ê jî bikaranîna hemû cûre mîn (mayin) bûn. Rêxistina DAIŞ'ê bi hemû cûre çekan ajotin ser hêzên Pêşmerge. Lêbelê di encam de Pêşmerge nêzîkî hemû xaka Herêma Kurdistanê (RHK) ji dagira DAİŞ'ê paqijkirin. Heman têkoşîn li Rojavayê jî bi awayekî serkeftî didome.

Lêbelê ev şer û têkoşîna Pêşmerge li dijî DAİŞ'ê ne hêsan bû. Di vî şerî de hêzên Pêşmerge li gelek bereyan qehremaniyek bê mînak nîşanî hemû cîhanê dan.

Di vê qonaxa bi şer de kesek heye ku barekî giran, bi rîsk û xeter girtiye ser milên xwe. Pêşmergeyê bi navê Cemal Seyare canê xwe daniye holê û li dijî DAIŞ'ê têdikoşe. Di her cûre operasyonê de beriya herkesî ew dikeve rê û mîn û bombeyên DAIŞ'ê paqij dike. Pêşmerge Seyare bêyî perwerde, dibistan û amûr, mîn û teqemeniyên ku bûne sedema qurbanîbûna bi sedan kesan paqijdike. Cemal Seyare heta niha 7 caran birîndar bûye, lê piştî çend rojan dîsa di sengeran de cihê xwe girtiye. Seyare tevî ku perwerdeyek neditiye jî vî karî dike, niha li Kurdistanê dersên rakirina mînan dide hêzên taybet yên amerîkî û brîtanî jî. Herwiha, di nava Pêşmergeyan hevsengerên xwe de weke Pêşmergeyê dilpola, Pêşmergeyê Nemir tê binavkirin.

Cemal Seyare ji sala 1993'an û vir ve Pêşmergayetiyê dike û xelkê devera Berwariya Duhokê ye. Cemal kar, xebat û çîroka xwe ji BasNûçe'yê re vegot û diyar kir ku ew ji karê xwe hez dike û bi dildarî vî karî dike.

**Ders dide pisporên biyanî**

Pisporê tesbîtkirin û îmhakirina mînan Cemal Seyare got ku çi kesekî tune ye ku DAIŞ pê ve bombe an jî mîn nateqine. Zarok, jin pîr an kal qet bo wan ferq nake. Seyare diyar kir ku ew ji karê xwe hezdike û wiha pê de çû: "Karê min yê rakirina mînan di şerê Rihabê de di sala 2005'an de destpêkir. Min ji tu kesê ders vernegirt. Niha jî amerîkî û brîtanî tên cem min ez dersan didim wan. Bes dilê min li ser vî karî ye. Nêzî 40 nefer li gel mîn in û ez tenê radikim, em operasyonan jî pêk tînin. Di tîma xwe de tenê ez vî karî dikim û hevalên min parastina min dikin." Seyare ragihand ku beriya operasyonê ew mînan paqij dike û wiha axivî: "Beriya êrişê ez diçim, nêzî 100 metreyan beriya hicûmê ez mînan paqij dikim. Li Gelî Bara destpêka şerê Şengalê rojekî beriya wê min ew çiya paqij kir. Li her çeperan mîn danîbûn. 169 mînên TNT danîbûn ku heta em nêzikî 500-600 metreyan em nêzikî bajar bûn. Em dû kes tenê bûn. 10 kesan parastina me dikir. Me rê paqij kir. Di şerê Şengalê de jî 100-150 metre ez beriya tîmê diçûm û min mîn radikirin. 22 gundên Gelgeryanê ji seta Mûsilê heta Rebîa, Til Mûsil, Til Xizir, Kahnî Şêrîn û li gelek deveran mîn danîbûn. Me 105 şehîd hene di dema rakirina mînan de."

Pêşmerge Seyare dibêje ku tîmên biyanî dersan ji wî digrin û wiha axivî: "Tîmên brîtanî, fransî li min dinêrin û gelek ji wan ji min re dibêjin 'tu dîn î.' Teqrîben 4-5 sal zêdetir ezmûna min ya paqijkirina teqemeniyan hene. Tên ez dersan didime wan. Ew bi xwe ranakin. Lê dinêrin, hîn dibin. Ji min re pirsîn ka ez çawa fêrbûme, min got 'xwedê nîşanî min daye ev kare û ji hezkirina xwe ez vî karî dikim.' Li ser xwestina mirov e hertişt. Dema mirov ji karekî hez nekir mirov nikare bike. Lê ez ji vî karî hez dikim. Xetertirîn tişt ew e ku di destê te ba lêbide û biteqe. Heta niha zêdetirî 340 mîn û teqemeniyên întîxarî min rakirine. Seyareyên mezin jî min bêtesîr kirine."

**"DAIŞ TNT bikartîne"**

Pêşmerge Cemal dibêje ku DAIŞ'ê di hemû deveran de mîn bicih kirine û diyar kir ku wî hezar û 483 TNT di nava 4 saetan de rakirine. Cemal Seyare operasyona rizgarkirina Şengalê jî bibîr xist û got, "Li Şengalê li her derê mîn çandibûn. Bi hemû cûre û şiyana xwe mîn hatibûn dayîn. Li Zûmarê jî gelek TNT danîbûn. Lê em bi ser hilbûn. Yên xwekuj jî hebûn. Li Şengalê yek bi min ve teqiya lê çi ji min nehat. Dema em êriş jî dikin, yên ku ez dikarim ez di wê navberê de radikim û roja din jî em wan diteqînin."

**"Amûrên me yên paqijkirinê kêm in"**

Pêşmerge Seyare di derbarê bîranînekî ku jibîr nekiriye jî rawe dike: "Gelek caran ez leqayê tiştên bi wî awayî hatime. Ferqa kurdên Bakur û yê Başur tune ye. Lê hin hendesê me hene, ev amûrên ku dane destê hin şexsan, di destê me de tune ne. Mesela min rêyek vekiriye ku bi hezaran Pêşmerge li du me werin, carînan hin Pêşmerge diçin dergehekê vedikin û mîn bi wan ve diteqe, ev gelek nexweş e. Ev cihê xemgîniyê ye. Ez zor pê aciz dibim."

**"Em jî li hember DAIŞ'ê mînan datînin"**

Seyare li ser Operasyona Mûsilê jî ragihand ku DAIŞ'ê li Mûsilê gelek mîn bicih kirine: "Min gelek hizra xwe di şeran de kiriye, DAIŞ'ê li Mûsilê gelek mîn danîne ku zêdetir yên xwekuj in. Ji Şengalê heta Sindoxa min li devereke berfireh mîn rakirine. Ez ne tenê radikim, di heman demê de ez dikarim bicih bikim jî. Beriya ku DAIŞ êriş bike jî ez mînan bicih dikim. Gelek bi vî awayî ketine. Beriya 2 mehan riya li Herdanê em çûn û me mînên întîxarî rakirin. 2.300 mîn jî min danî."

**"7 caran birîndar bûm"**

Seyare di derbarê Operasyona Tiliskof û birîndarbûna xwe jî de axivî û wiha got: "Li şerê Tiliskofê de ez bîrîndar bûm û ew xwîn bi ser serê min ket. Ez ketim kemîna wan. Me cih paqij kiribû. Mayîneke întîxarî mabû ku ez rakim, lê beriya min yek danîbûn di xaniyekê de. Siwarek mabû. Lê ez ji wê êrişî bi birîndarî xelas bûm û me operasyona xwe bi serkeftî temam kir. Ez di şerê DAIŞ'ê 7 caran birîndar bûme. Di van hemûyan de 3 rojan ez li nexweşxanê mam û roja çaran ez vegeriyame sengeran. Ez 40 rojan, 20 rojan carekî diçim malê. Çûna min a malê kêm e. Ez tim li ser karê xwe me."

**"Baweriya hevsengerên min bi min heye"**

Cemal Seyare di derbarê helwest, hest û nêzîkatiye hevalên wî yên di sengeran de jî diyar kir ku hevalên wî pir jê hez dikin û wiha behsa hevsengerên xwe kir: "Hevalên min ên di sengeran de jî gelek ji min hez dikin. Baweriya wan bi min heye. Dizanin ku ez ê riya wan paqij bikim. Li Xazirê 2 metre mabûn ku qobraya DAİŞ'ê xwe bi me ve biteqîne. Lê şikur ji xwedê em ji vê jî xilas bûn. Li wir herî kêm min 134 mînên tankan rakir û zêdetirî 64 mînên tankan jî min danî."



# Keda 20 serre û Grûba Vateyî

Miraz Babij

Serre 1899, Melayê Xasî kêmaniyêk vînê, kaxîz û qelem girewt xo dest û va; "Ez bi bismîllahî îbtîda kena" nê îbtîdakerdişî ra dima vengê Xasî resa Sêwregi û Usman Efendî zî wîna va: "Bi nameyê wahêrê no erd û azmîn ki ma dest kerd bi no girwedo rengîn."

E, girwe rengîn bi, merdimî mêrxasî bî labelê bêwayîrî destê mêrxasan girê dayê. Semedê na bêwayîrî nê di eseran ra dima wextêko derg çiyêk nêame nuştiş. Bitaybetî îlankerdişê cumhuriyetî ra dima kadroyanê kemalîstan, dewlete û heme dezgehê dewlete sey malê pêrdê xo vînayî û hemwelatî yê ke sey înan nêfikirênê duştê zulmêkê zaf pîlî mendî.

Heme miletê ke Tirkiya de ciwiyenê -tayê yan zî zaf- nê zulmî ra para xo girewte, labelê kurdan hemine ra vêşêr...

Semedo ke îdeolojiyê resmî kemalîzm kesê ke Tirkiya de ciwiyenê tirk qebûl kerdê û kurdî zî teberê nê qebulî de bî, Şêx Seîdî ra heta Dêrsim, Dêrsîm ra heta Zîlan, Zîlan ra heta Newala Qesaba her parçeyê Kurdîstanê Vakurî binê zulmî de nala.

Semedo ke her kes tirk bi ganî bê tirkî qet ziwanêk û bê kulturê tirkan kulturêk çin biyayê. Goreyê nê fikrî çiyê ke kurdî û Kurdîstanî yê heme bî qedexe. Nameyê dewan, şaristanan, însanan ameyî vurnayîş û girweyo (karo, xebata) ke bi bismîllahî ya amebî îbtîdakerdiş bi zulm û zor a ame vindarnayîş.

Goreyê lehçeyanê bînan kirdkî hîna vêşî tesîrê nê zulmî de mende, çunke qet nêbo parçeyanê bînan yê Kurdîstanî de qedexekerdişê ziwanî sey Tirkiya nêbî û –tayê yan zî zaf- xebatê ziwanî ameyê kerdiş. Labelê kirdkî semedo ke Tirkiya de tena heps bîbî, goreyê lehçeyanê bînan tîm pey de mend.

Bado, sey Hawar tayê govaran de derheqê kirdkî tayê xebatî bibê zî, zafane folklorîkî bî û sîstematîkbiyayîş ra dûrî bî. Serra 1963'yî de bi nameyê "Roja Newe" yew rojname de (o zî yew hûmare tena vejiyayo) di meqaleyê kirdkî weşaniyayê, serra 1975'î ra dima Anqara de sey Özgürlük Yolu (1975), Roja Welat (1977), Devrimci Demokrat Gençlik (1978) rojname û govaran de tayê metnî ameyê weşanayîş labelê zafane yan xeberê kilmî biyê yan zî metnê folklorîkî biyê.

Nê xebatan û nuşteyan ra dima serra 1979'î de bi nameyê Tîrêjî ya yew govare vejiyena û hîrê hûmaranê xo Îzmîr de, yew hûmare zî Swêd de kome de çar hûmarî vejiyena. Nê çar hûmaran de kes vîneno ke, bi hewayêko serûber û tewir-tewir mijaran de nuşteyî ameyê nuştene.

J. Îhsan Espar govara Zendî de, hûmara yewin de, behsê tayê mexlesanê ke Tîrêj de ameyê xebitnayîş keno û vano mexlesê sey M. Brîndar, Dewij, Roşan Barîçek, Mehmet Pîran, M. Pîran, Mehmet Malmisanlı heme mexlesê Malmîsanijî yê. Yanê kes eşkeno vajo ke hemahema qismê kirdkî yê govare, Malmîsanijî tena veto.

Nê xebatan ra teber, Malmîsanij û çend embazê ey serra 1996'î de, mabênê 2 û 4'ê tebaxe de Stokholm de seba standardîzekerdişê kirdkî yew kombiyayîş virazenê û bingeyê Grûba Xebate ya Vateyî tiya de erziyêno. Nê kombiyayişî qederê kirdkî de zaf vuriyayişê erjayeyî kerdî û kirdkiya bêwayîre xo rê tayê kedkarê mêrxasî vînayîbî.

Netîceyê nê kombiyayişan yê yewin û diyin govara Çira de, ê kombiyayişanê bînan zî Govara Vateyî de ameyê weşanayîş.

Ez do na xebata xo de analîzê nê kombiyayîşan bikera û bi kilmî xebatê ke ameyê kerdiş sey kronolojî rêz bikera.



Xebate ya Vateyî tiya de erziyêno. Nê kombiyayişî qederê kirdkî de zaf vuriyayişê erjayeyî kerdî û kirdkiya bêwayîre xo re tayê kedkarê mêrxasî vînayîbî.

| KOBÎYAYÎŞ | GOVARE, HÛMARE, RÎPELÎ | TARÎX - CA | BABETA KOMBÎYAYÎŞÎ |
|---|---|---|---|
| Yewin | Çira, 7, r. 72-83 | 2-4.08.1996 Stokholm | Herfî, Tarîxî, Hûmarî, Fîîlî, Edatî, Nameyê rojan, qitayan, mewsiman ûsn. |
| Diyin | Çira, 9, r. 75-85 | 28-31.04.1997 Stokholm | Hûmarî – Zemîrî – Name – Sifetî |
| Hîrêyin | Vate, 2, r. 5-12 | 1-3.08.1997 Bielefeld | Nameyê welatan û dewletan – Îzafeyî – Halê wayîrbiyayîşî |
| Çarin | Vate, 4, r. 4-18 | 10-13.04.1998 Duisburg | Kilmnuşteyî – Herfa pêrabestene |
| Pancin | Vate, 5, r. 4-21 | 14-16.08.1998 Stokholm | Termê Gramerî – Rastnuştişê tayê çekuyan |
| Şeşin | Vate, 9, r. 4-31 | 29.07-02.08.1999 Stokholm | Termê edebiyatî – Termê perwerdeyî – Termê huqûqî |
| Hewtin | Vate, 11, r. 6-32 | 20-24.04.2000 Stokholm | Sifetê nîşankerdene – Anatomî – Nameyê heywanan |
| Heştin | Vate, 13, r. 5-33 | 23-27.12.2000 Stokholm | Termê Merdimiye – Nameyê hacetan |
| Newin | Vate, 15, r. 4-54 | 09-15.08.2001 Stokholm | Termê weşî – Cografya – Tayê çekuyê neweyî |
| Desin | Vate, 18, r. 4-54 | 30.07-06.08.2002 Stokholm | Pêpersayîş – Nameyê meyweyan |
| Yewendesin | Vate, 20, r. 4-52 | 13-18.04.2003 Stokholm | Rastnuştişê tayê çekuyan – Çekuyê anteyî – Nuştişê çekuya "Çin"î |
| Diwêsin | Vate, 22, r. 4-32 | 03-08.04.2004 Stokholm | Wendişê herfan – Rastnuştişê tayê çekuyan |
| Hîrêsin | Vate, 24, r. 4-89 | 28.02-04.03.2005 Lovstabruk | Çekuyê cilan – Rastnuştişê tayê çekuyan – Tayê çekuyê neweyî |
| Çarêsin | Vate, 28, r. 4-74 | 23-28.12.2006 Vasteras | Termê werdiş û şimitişî – Tayê çekuyê neweyî |
| Pancêsin | Vate, 29, r. 4-33 | 01-03.07.2007 Diyarbekir | Rastnuştişê tayê çekuyan |
| Şiyêsin | Vate, 32, r. 26-70 | 15-20.08.2008 Vasteras | Termê teknolojiyê enformasyonî – Rastnuştiş – Tayê çekuyê neweyî |
| Hewtêsin | Vate, 33, r. 5-27 | 08-11.04.2009 Diyarbekir | Rastnuştişê tayê çekuyan |
| Heştêsin | Vate, 34, r. 5-23 | 07-10.08.2010 Dêrsim | Rastnuştişê mesderî – Nameyê mesderî |
| Newêsin | Vate, 36, r. 9-31 | 21-24.04.2011 Diyarbekir | Nameyê tayê herfan – Qaydeyê rastnuştişî |
| Vîstin | Vate, 38, r. 9-26 | 30.10-02.11.2011 Mêrdîn | Tayê çekuyan û terman ser ro, hîna vêşî zî termanê sînema ser ro xebîtyayê. |
| Vîst û yewin | Vate, 39, r. 11-43 | 08-11.04.2012 Çewlîg | Tayê persê rastnuştişî – Termê Meslegan |
| Vîst û diyin | Vate, 40, r. 5-24 | 31.10-02.11.2012 Diyarbekir | Termê Meslegan – Termê trafîkî - Nazikvajî |
| Vîst û hîrêyin | Vate, 40, r. 25-56 | 01-04.04.2013 Diyarbekir | Termê celebî (bazirganiya heywanan) |
| Vîst û çarin | Vate, 42, r. 9-42 | 30.10-02.11.213 Diyarbekir | Termê sey koy-koyî |
| Vîst û pancin | Vate, 45, r. 9-55 | 15-18.04.2014 | Termê xebata akademîk |
| Vîst û şeşin | Vate, 45, r. 75-98 | 29.10-01.11.2014 Dêrsim | Termê peymitişî – Termê demî (zemanî) |
| Vîst û hewtin | Vate, 46, r. 9-40 | 06-09.04.2015 Sêwregi | Termanê zemanî – Termanê heyatê (cuyê) dewe |

www.arsivakurd.org

BasNûçe 05 - 11 Îlon 2016

## Stranbêj Kerîm Şêxo:

# Huner ji êşê hezdike

Derya Kılıç

Kerîm Şêxo di sala 1980'an de li Qamişlo ya bajarê Rojavayê ji dayîk bûye. Wî di bin bandora staranbêj û wêjeya kurdî di sala 1997'an de dest bi stranbêjiyê kiriye û Şêxo heta niha 3 albûm pêşkêşî hezkiriyên xwe kirine. Di albûma Şêxo de êş û kulên civaka kurd heye. Li gorî Şêxo; civakên ku zor û zehmetiyê dikşînin, di warê hunerê de jî pêş dikevin. Ji ber ku civaka kurd jî pir êş kişandiye, di hunerê da pêş ketiye.

Şêxo li Rojava najî û berê xwe daye sirgûnê. Şêxo sedema koçberiya xwe wisa tîne ziman: "Li Rojava nêzîkî 300 hezar kurd hebûn û ew bê nasnamê bûn. Ez jî ji wan kesan bûm. Nasnameya min tune bû." Ji ber bê nasnamebûnê Şêxo nikaribûye xwe û hunera xwe pêş bixe, malbat û welatê xwe li paş xwe hiştiye û koçî Almanyayê kiriye. Hunermend Şêxo derbarê jiyan û hunera xwe de pirsên me bersivandin:

**Te çawa dest bi muzikê û nivîsîna helbestan kir?**

Min di 97'an de dest bi hunerê kir. Wê demê min helbest ji bo staranan re amade dikirin. Hingê kesekî ez nas nedikirim. Ez li aliyekî bi hunerê re mijûl dibûm û li aliyekî din jî min ji bo albûma xwe helbest dinivîsîn. Piştre jî min albûma xwe ya yekem çêkir. Di albûmê de bêtir awaz û gotinên min cih digrin. Min di sala 2005'an de albûma xwe ya duyem û di sala 2007'an de jî albûma xwe ya seyem çêkir. Herwiha min albûma xwe ya dawiyê jî di 2016'an de yanî 3-4 meh berê pêşkeşê hezkiriyên xwe kiriye.

**Tû çi wate didî hunerê, li cem te huner çawa dijî?**

Huner ji êşê hez dike. Ez bawer dikim dema ku êşekî nebe, huner û hunermendî jî çênabe. Civaka me hem di warê feqîriyê de hem jî di warê zilm û zoriyê de bi gelekî kêşeyan re rûbirû maye. Vê yekê bandor li ser stranên civakî û gelêrî kiriye. Bi rastî huner jî di bin vê bandorê de maye. Heger wisa nebe, huner jî nabe. Civakên ku pir zehmet dikşînin, di warê hunerê de jî gelekî pêş dikevin. Di çîroka min de jî êş heye. Min di bin bandora êşa civaka kurd de dest bi hunerê kir.

**Rojava di warê wêje û stranê de gelekî pêş ketiye. Wêje û stranbêjên Rojava bandorek li ser te û hunera te kiriye?**

Helbet. Meseleyên civakî û netewî li ser hemû humermendan bandorê dikin. Lê bêyî Rojava em wek hunermend bandora hunera Başûr, Bakur û Rojhilat yanî hunera her 4 parçeyên Kurdistanê li ser xwe hîs dikin.

**Cenabê te niha li welatekî din dijî. Te ji bo çi û çi wext koçî Almanya kir. Sedem çi bû?**

Min di sala 2010'an de ji Rojavayê koçî Almanyayê kir. Li Rojavayê nêzîkî 300 hezar kurd bê nasnamê bûn. Ez jî ji wan kesan bûm.





Nasnameya min tune bû. Carcaran ji derve pêşniyara konsertan dihatin. Lê min nikarîbû beşdarî wan bûbûma. Ji ber ku nasnameya min tune bû, min nikarîbû derketima derveyî Sûriyê. Ji bilî vê gelekî sedemên din jî hebûn. Em carcaran ji sedema xebatên hunerî ji aliyê rejîmê ve dihatin desteserkirin. Dema ku rûdanek pêk dihat, ji me re digotin: "Werin bi erebî bistrên." Me jî ew daxwaz qebûl nedikirin. Me jî digot: "Heger em karibin, em dê bi her zimanî bistrên." Ez bi daxwaza kesekî bi zimanekî din stranan nabêjim. Li Rojavayê ew zext jî li ser me hebû. Me dikarîbû hunerek baş çêbikira. Li wê derê azadî tunebû. Huner azadiyê dixwaze. Di bin zextê de huner çênabe û tiştên ku pêk tên jî huner nînin.

**Li Almanyayê rewşa te çawa ye?**

Li Kolna Almanyayê dijîm. Ez li vê derê di şaredariyê de kar dikim û di şaredariyê de bi karê wergerê ve mijûl im. Ji aliyê din ve jî karê xwe yê hunerê jî berdewam dikim. Dema ku ji kar derdikevim bi hunerê re mijûl dibim.



**Li wê derê ji bo hunerê derfetên we çawa hene?**

Derfetên me hene. Lê zêde nînin. Ji ber ku em bi gelekî zehmetiyan re rûbirû ne. Mesela min albûma xwe ya dawiyê şand Bakurê Kurdistanê. Me li wê derê mûzîkên wê amede kirin. Li vê derê jî min dengê xwe tomar kir. Zehmetiyên wisa hene. Ne wek welatê me ye. Bo mînak em li welatê xwe çend kes dihatin digel hev û albûmek çêdikir. Di warê aboriyê de pirsgirekên me tunebûn. Li vê derê em bi kêşeyên aborî re rûbirû ne û ji me re gelek zehmetiyan çêdike. Herwiha em û heval ji hev du gelekî dûr in. Em nikarin bi rehetî werin cem hevdu. Pir zehmetiyên me hene. Lê dîsa jî em hewl didin ku hunereke resen çêbikin û em hunera resen jî xwedî dikin.

**Gelo tu difikirî rojekî dîsa vegere Qamişlo û Rojava?**

Dema ku em ji Rojavayê derketin, fikreke me ya wisa hebû û me digot, 'em ê rojek vegerin Rojavayê.' Em bi hêvî ne. Ez hîn jî di vê fikrê da ne. Çima na? Heger rewşa Rojavayê baş bibe, em ê vegerin. Em ji welat dûr in. Lê disa jî têkiliyên me bi welat re hene û em dê rojek vegerin.

Li Rojavayê di warê çand û huner de rûdanên baş çêdibin. Tiştên baş pêk tên. Em bi hêvî ne ku milet jî dê serbikevin. Em li wê derê ji bo Rojavayê xebatên xwe dikin. Bo mînak bi konsertan em alîkariya Rojava dikin û pêwendiyên me yên bi welêt re gelekî baş in. Hemû malbata min hîn jî li welêt in.

**Rojava di warê çand û hunerê de çawa ye? Hûn çawa dinirxînin?**

Ez bi mînakekê dê bersiva vê pirsê bidim. Bo mînak Qamişlo di warê hunerê de ji Rojava re weke tabloyekê ye. Hemû reng tê da hene. Her reng di cihê xwe de xweşik in. Bi rastî jî tabloyeke ber bi hev e. Hemû parçeyên Kurdistanê tabloyek in. Lê hemû di nav xwe de rengek in. Herwiha cudahiya wan ew e ku di hemû parçeyên Kurdistanê de bandora desthilatdariyê tê dîtin. Bo mînak, dema ku em li Bakurê Kurdistanê dinêrin, em bandora tirkan dibînin. Em çiqas di nav ereban de bin jî, divê ew bandora hunera erebî li me nebe.

**Dengbêjiya kurdî û civatên dîwanan li Rojava navdar in. Ew dengbêj û dîwanên dengbêjan çiqasî di bîra te de ne?**

Ez bawer dikim ku hunermedekî ji wê kaniya folklorê av venexwaribe, pêş nakeve. Lê weke ku dibêjin: 'Folklor jî zimanê demê bû.' Ez jî bi vê nêrînê lê dinêrim. Tu nikarî hemû gotinên folklorê bi kar binî. Mirov nikare her gotinê di her demê de bi kar bîne. Lê di folklorê de hin tiştên taybet hene, dema ku hunermend distrên, divê ji wan sûdê werbigrin. Mirov dikare folklorê bi rengekî nûjen bi kar bîne.

Ez gelekî stranbêjan guhdar dikim. Ez ji Mihemmed Arîfê Cizîrî pir hez dikim û gelek guhdariya wî dikim. Ji bilî wî Şakîro, Tehsîn Taha, Mihemmed Şêxo bandora wan pir li ser min heye.

**Te û Ciwan Haco ji bo teqîna Qamişloyê projeyek amede kiriye. Tu dikarî derbarê vê bernameyê de hin zanyariyan bidî?**

Ez û Ciwan Haco ji bo konsertekê amedekariyê dikin. Em wê konsertê ji bo Qamişloyê dê li dar bixin. Min û Ciwan di Newrozê de jî konsertek pêk anîbû û tekiliyên me gelekî baş in. Em niha ji bo vê konsertê amedekariya xwe dikin. Lê dema konsertê hîn jî nediyar e. Ne tenê ji bo Qamişloyê, ji bo her ça rparçeyên Kurdistanê jî ji min alîkariyê bixwazin ez ê wek hunermend hertim amede me.

"Huner ji êşê hezdike. Ez bawer dikim dema ku êşekî nebe, hestên hunerî jî çênabe. Civaka me hem di warê feqîriyê de hem jî di warê zilm û zoriyê de bi gelekî kêşeyan re rûbirû maye. Vê yekê bandor li ser stranên civakî û gelêrî kiriye. Bi rastî huner jî di bin vê bandorê de maye. Heger wisa nebe, huner jî nabe. Civakên ku pir zehmet dikşînin, di warê hunerê de jî gelekî pêş dikevin."

www.arsivakurd.org